

Midûrê TRT-6'ê bi Rûdawê re axivî

12

"Ti tirseke me derbarê ziman de tune"



Ciwan Haco li ser rêya Diyarbekirê ye

8

Belgefîlmekî swêdî çûyina Ciwan a Amedê vedibeje

Rûdaw
ÇAPA EWRÛPA
Xwendevanên Rûdawê bêtir dizanin



بەپێی بەڵگەنامەکانی
ماڵپەڕی ویکی لیکس

**سەرۆکی پاکستان دژی سەربەخۆیی کوردستان بوو**

4 ◀

Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 74 | 7 Kanûn / Dezember 2010

### Almanya: Muxbîrekî BND yê esil îraqî çavkaniya çekên komkuj ên Îraqê derket

Welatiyê Îraqî Rafed el-Cenabî ku bi kodnavê "Curveball" tê naskirin, di 1999'an de li Almanyayê doza mafê penaberiyê kir, wî îdîa kir ku ew endazyarê kîmyayê ye û ji îstixbarata almanî BND re behsa hebûna çekên komkuj ên biyolojîk li Îraqê kir. BND jî ev agahî gihandin îstixbaratên amerîkî û Wezîrê Derve yê amerîkî Colin Powell jî ev agahî weke belgeya hebûna çekên komkuj ên biyolojîk li Îraqê li pêşberî Civata Neteweyên Yekbûyî ragihandin cîhanê. Li ser bingeha agahiyên Rafed el-Cenabî, DYA'yê di 2003'an de êrişî ser Îraqê kirin. Niha jî eşkere bû ku BND bi salan pere û alîkarî didan El-Cenabî û çîroka wî dîsa Almanyayê mijûl dike.

Endamê parlamenta almanî, Hans-Christian Stöbele, vê hevkariya muxbîr Rafed el-Cenabî û BND rexne dike û dide zanîn ku nayê qebûlkirin ku BND piştevaniya mirovekî bike ku agahiyên sexte didan wê û divê ev yek di parlamenê de bê lêkolînkirin." ▶2

# Hêza Tevgera Kurd ji bo Otonomiya Demokratîk heye

Lêkolera ji Zanîngeha Bogaziçi ya Stenbolê û şarezaya otonomiya Zapatîstan, hêza Kurdan di rewşeke baş a bêhempa ji bo avakirina Otonomiya Demokratîk dibîne.

Doç. Dr. Zeynep Gambetti ji Beşa Zanistên Civakî li Zanîngeha Bogaziçi li Stenbolê, ku li ser otonomiya Zapatîstan a li Meksîkayê çendîn lêkolîn kiriye, ji Rûdawê re behsa lêkolînên xwe derbarê otonomiya Zapatîstan kir û destnîşan kir ku Kurdên Bakurê Kurdistanê dikarin ji bo bidestxistina mafên xwe ezmûnên Zapatîstan li Meksîkayê ji xwe re mînak bigrin.

Zeynep Gambetti anî ziman ku ew li gor mercên Tirkiyê, rêxistin û Tevgera Kurd di rewşeke gelekî baş de dibîne û li gor wê Kurd bi vê hêza xwe ya civakî û siyasî dikarin bi hêsanî Otonomiya Demokratîk pêk bînin. Zeynep Gambetti herwiha anî ziman ku pêwîst e Kurd ji bo otonomiyê beriya her tiştî bingeha otonomiyê ya civakî, aborî û hiqûqî amade bikin. ▶3

## UNHCR: Rewşa Kampa Mexmûrê baş e



Berpirsê UNHCR li Îraqê, Charles Lynch, rewşa Kampa Mexmûrê li Başûrê Kurdistanê ji ya gelek kampên din baştir dibîne ▶4



## Bi Wikileaks serdemekî nû destpê kir?

Malpera Wikileaks piştî eşkerekirina dokumentên veşartî yên derbarê şerên li Afganistan û Îraqê de, niha jî bi belavkirina 250.000 belgeyên Wezareta Derve ya Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) rojeva cîhanê serebino kir û bû sedema sergêjiyên mezin ji bo rêveberiya DYA'yê. Dokumentên ku Wikileaks vê carê belav kirine, raportên balyoz û karmendên balyozxaneyên DYA li seranserê cîhanê derbarê serok û siyasetmedarên wan welatan e ku ji Wezareta Derve ya DYA re hatine şandin. Di wan raportan de gelek agahiyên ku bûn sedema nerazîbûna wan kes û



welatên ku raport derbarê wan de ne, cîh digirin. Piştî belavkirina belgeyan, DYA'yê hewl dide pêşî li malpera Wikileaks bigre û di van rojên dawî de malpera Wikileaks ev çend caran hatiye rawestandin.

Pisporên siyasî di wê bawerîyê de ne ku serdemekî nû di dîplomasiya navnetewî û bi taybetî jî ya ligel karbidestên Amerîkî destpê dike, ji ber gelek kes wê êdî bi awayekî rasterast nerîn û helwesta xwe ji karbidestên Amerîkî re neyînin ziman. Li aliyê din jî gelek kes ji bidestxistin û belavkirina van belgeyan bi şik in û bawer nakin ku belavkirina van belgeyan "qezayek" be. Di nav van belgeyan de gelekên ku Kurdan jî û welatên ku Kurd lê dijîn eleqedar dikin hene.

*Raportên nû derbarê belgeyên Wikileaks ku Kurdan eleqedar dikin, hûn dikarin di malpera Rûdawê (www.rudaw.net) de bixwînin.*





## Masîvan qasidê demkî ye, yan ê herdemî ye?

**Mehmet Sebatli**

Rastî, gotineke relatîv e, ango ji demêkê heta demeke din, ji bo her kesekî wetaya wê diguhere. Carinan ji bo kesekî jî rastî li gor demê tê guhertin.

Ev çend meh in di medya Tirk û Kurd e, di qada siyasetê de derbarê pêwendiyên navbera PKK'ê û Dewleta Tirk de guftûgo tên kirin. Heta nîv sal berê gotinên, “Têkiliyên navbera PKK'ê û Dewleta Tirk” bi serê xwe wek tabû dihatin dîtin û dibûn sedemê darizandina kesê ku anîbû ziman. Lê îro rayedarên dewletê bi zimanekî eşkere radigihînin ku ew bi Serokê PKK'ê Abdullah Ocalan re diaxivin. Ji van axaftinan re her kesekî navek datîne...

Hinek aliyên çapemeniya Tirk têkiliyên di navbera PKK û Dewleta Tirk de wek “Pêwendî” an “Piştgirî” lanse kirin. Rojnameya Tarafê bi vê helwestê bi mehan nûçe û hevpeyvîn weşandin. Yek ji sernûserên vê rojnameyê Yildiray Ogur hewl dida xwe ku ji van têkiliyên demî û pratîkî “rêzefîlmek” derxe. Bi vê mebestê Ogur çend caran di quncikê xwe de behsa Balikçi (Masîvan) kir ku li gor îdiaya wî ev kes di têkiliyên navbera PKK-TC'ê de rolê herî girîng leyîstiye. Lê uslûba gotarên Ogur û armanca wî ne objektif bûn, ji ber ku wî hewl dida îspat bike ku şerê PKK'ê bi icazet e û tenê kêrê desthilatdariya Artêşa Tirk tê û Ergenekon piştgirî dide vî şerê demdirêj.

Yildiray Ogur ji bo teoriyên xwe Masîvan dikir çavkanî; Mehmet Baransû jî belgeyên ku ji odeyên tarî yên dewleta kûr diketin destê wî di rûpelên rojnameyê de diweşand. Ogur ji ber ku bi wî kesî re di restauranteke masî tên xwarin de hevdîtin çêkir, ev nav lêkir.

Masîvan mehekê berê xwe gihand Neşe Duzelê û jê re derbarê rolê xwe yê di pêvajoya aştiyê û têkiliyên navbera PKK û Dewleta Tirk de, vegot. Niha jî Masîvan, ku Kurdekî 51 salî ye û ji Êlihê ye û ji mêj de li Stenbolê dijî, di malpera Netkurd de agahiyên girîng (!) dide. Lê agahiyên ku Masîvan dide, hinek nakokiyan dixe serê mirov. Ew di têkiliyên navbera PKK'ê û Dewleta Tirk de xwe wek mirovê xwediyê gotina dawî nîşan dide, herwiha xwe wek şêwirmend û mirovê aqilmend jî binav dike. Mînak, Masîvan dibêje ku fikrê agirbesta dawî ya beriya referandûmê, yê wî ye!

Hevalê Masîvan ê qasîd jî Prz. Selim Okçuoglu ye. Lê her kes dizane ku Okçuoglu ji ber di van têkiliyan de navberkarî kir, jiyana wî ket metirsiye û mecbûr ma ku ji Tirkiyê derkeve. Gelo Masîvan ku qaşo rolê herî girîng ew leyîstiye, çawa karibûye li Tirkiyê bimîne? Ligel ku ew dibêje, Tirkiye piştê sala 1998'an di siyaseta Kurd de ketiye nav pêvajoyeke gelek tûnd...

Beriya ku rayagiştî Masîvanê bin Pira Galatayê nas bike, roja 10'ê Tîrmehê raporteke berfireh a rojnamevan Gunay Aslan a derbarê têkiliyên navbera PKK û Dewleta Tirk de di rojnameya Tarafê de hat weşandin. Aslan bal dikişand ser helwesta Dewleta Tirk û digot ev 25 sal in ku nûnerên dewletê li rêya têkildayîna bi PKK'ê re digerin. Aslan helwesta Dewleta Tirk jî ne wek aştiyane, lê wek ku bixwaze Tevgera Kurd bixapîne, demê biborîne û wê ji şerê çekdarî sar bike, binavdikir. Ango ne wek Yildiray Ogur ku van têkiliyan wek rolê Ergenekonê nîşan dide û ne jî wek Masîvan ku hemû têkiliyan bi xwe ve girê dide.

Aliyên şer Artêşa Tirk û PKK ne; ên ku şer bi dawî bînin û têkiliyan çêbikin jî ew in û dibe ku di van têkiliyan de rolê Mam Celal jî hebe, rolê çendîn rojnamegerên Tirk jî hebe, rolê nîvîskara Tirk Alev Alatli jî hebe (ligel ew vê yekê înkar dike) û dibe ku rasterast rolê generalên Artêşa Tirk jî hebe.

Masîvan di hevpeyvîna ligel redaktorê Netkurdê M. Şefîq Oncu de îdia dike ku Abdullah Ocalan di 9'ê Cotmeha sala 1998'an de di çarçova pêwendiyeke bi Dewleta Tirk re ji Sûriyê derketiye û çûye Ewrûpayê. Zextên wê demê ku Dewleta Tirk bi hemû hêzên xwe û ji 7'an heta 70'ê saliyan bigire bi deh hezaran şovenîstan li ser Îtalyayê nîşan dan jî bi gotinên gilover derbas dike. Sedema ku helwesta Dewleta Tirk hişk dibe, li gor Masîvan, gotinên Ocalan in, ên ku behsa dewletbûn û serxwebûna Kurdan kiriye...

Masîvan tenê ji bo demekê (1996-1998) bi Selim Okçuoglu re (wê demê parêzeriya girtiyên PKK'yî yê Girtîgeha Sagmalcilar û ya Bursayê dikir) di navbera grûbeke fermî, ku gotine em nûnerên dewletê ne û girtiyên PKK'yî de wek qasid rol leyîstiye. Wê demê bi berpirsyarê girtiyên PKK'ê Sabri Ok re û bi berpirsê Girtîgeha Sagmalcilarê re telefona mobîl hebû û dikaribûn agahiyan rasterast bidin partiya xwe. Herwiha nûnerên dewletê çend caran rasterast bi berpirsên Girtîgeha Sagmacilarê re axivîn. Ango têkiliyeke wan a rasterast hebû û ti hewcedariya wan bi kesên navber tune bû.

Ji bo her demê navberkar hene. Çiller çû Yılmaz hat, ew çû Ecevît hat û 'qasîd' jî hatin guhertin.

Tevî derewên wî îstixbaratên almanî bi salan alîkariya wî dikir

# Li Almanyayê çîroka muxbîrekî îraqî dîsa dikeve rojevê



Rafed el-Cenabî yê îraqî bi kodnavê “Curveball“ tê naskirin

**Muxbîrê esil îraqî “Rafed el-Cenabî“ bi salan hevkariya îstixbarata almanî BND kir û li ser agahiyên wî yên derbarê çekên biyolojîk li Îraqê de, DYA'yê 2003 êrişî Îraqê kir. Tevî ku agahiyên el-Cenabî paşê sexte jî derketin, BND hevkariya xwe bi salan domand û ew kir hemwelatiyê alman...**

**Sîrwan H. Berko** Berlîn

Berî ku Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê di sala 2003'ê de dest bi şerê li dijî Îraqê bikin, ew li sedemên ji bo vî şerê digeriyan. Yek ji sedemên bingehîn ew bû ku çekên tevkuj ên biyolojîk li Îraqê hene. Piştre eşkere bû ku çavkaniya vê agahiyê welatiyek Îraqî yê bi navê Rafed el-Cenabî bû, ku bi kodnavê “Curveball“ tê naskirin. Ji ber ku Curveball li Almanyayê dijî û Dezgeha Îstixbaratên Federal (BND) a almanî bi salan pere didan wî û alîkariya wî kir ku ew nasnameya almanî bi dest bixîne, çîroka wî niha dîsa Almanyayê mijûl dike.

Çîroka Curveball di 1999'ê de dest pê kir. Di wê salê de wî li Almanyayê doza mafê penaberiyê kir û îdîa kir ku ew endezyarê kîmyayê ye. Piştre hat zanîn ku wî ji îstixbaratên almanî re behsa hebûna çekên komkuj ên biyolojîk li Îraqê kiriye. BND ji aliyê xwe ve ev agahî gihandin îstixbaratên amerîkî. Ev agahî di 2003'ê de bûn sedem ku George W. Bush biryara şerê li dijî Îraqê bide. Lê piştî şer zû eşkere bû ku çekên komkuj li Îraqê tune ne. Bi kurtî: Çavkaniya îstixbaratên almanî sexte derket.

Hefteya buhurî di kanala ARD'ê ya almanî de bernameyeke taybetî li ser çîroka Curveball hat weşandin. Piştî xebata bi salan du rojnamevanan belge pêşkêş kirin ku tevî ku Dezgeha Îstixbaratên Federal pê hesiya ku çavkaniya wê sexte ye, lê dîsa jî wê heta sala 2008'ê mehane 3000 Euro didan wî. Ne tenê ev: Da ku çavkaniya wê nasnameya almanî bi dest bixîne, BND di sala 2008'ê de hertişt kir. Ji hingî ve Rafed el-Cenabî welatiyekî almanî ye. Ev e skandala nû ku niha Almanyayê mijûl dike. Endamê parlamenta almanî ji Partiya Keskan Hans-Christian Stöbele li ser van agahiyên nû derketî serê xwe dihejîne. Ew diyar dike ku ew fêm nake çawa BND bi salan pere didan Curveball û nasnameya almanî jê re peyda kir. Stöbele dibêje: “Pereyên ji derîbeyên welatiyên almanî ne, nabe ji bo van karan bên serfkirin. Dibe ku BND dixwest bi vî awayî çavkaniya xwe bêdeng bike, da ku tiştekî ji raya giştî re nebêje.“

Di sala 2006'ê de serokê BND yê hingî Ernst Uhlau diyar kir ku ew ecêbmayî mabû dema wî dît bê Amerîkî ji bo pêkanîna şer çi sedeman bi nav dike. Ango: Curveball ne ciyê baweriyê bû. Lê berî şer BND di parlamena almanî de eşkere kiribû ku baweriya wê bi Curvball hebû. Prof. Friedrich Pflüger, ku hingî endamê parlamenê bû, tîne bîra xwe bê BND hingî di Komîteya Siyaseta Derve ya parlamena federal de çi gotibû: “Me hingî pirs kir bê ma gelo ew agahiyên ku Wezîrê Derve yê amerîkî Colin Powell pêşkêşî Neteweyên Yekbûyî kiribûn, rast bûn an na. Agahiyên ku BND hingî dan me ti guman bi me re çênekir, ku agahiyên ku Colin Powell dane Neteweyên Yekbûyî bi ti awayî şaş bin.“ Ango: BND bawerî bi parlamenterên almanî re çêkiribû ku agahiyên Curveball li ser çekên tevkuj li Îraqê ciyê baweriyê ne.

Piştî ku Rafed el-Cenabî, ku di kanalên erebî de xwe wek sekretêrê giştî yê Tevgera Demokratên Azad li Îraqê dide nasîn, di sala 2008'ê de dest pê kir ku bi karûbarên taybetî rabe, Dezgeha Îstixbaratên Almanî peymana ligel wî fesix kir û nema pere dan wî. Îroj el-Cenabî ligel malbata xwe mehane dora 1500 Euro alîkariya diravî ji dewletê distîne. Bi ser de jî ew ji bo hevpeyvînan ligel alavên ragihandinê doza pereyan dike. Hans-Christian Stöbele dixwaze çîroka wî dîsa bibe parlamena almanî. Ew dibêje: “Qet nayê qebûlkirin ku BND piştivaniya mirovekî bike ku agahiyên sexte didan wê. Divê ev yek di parlamenê de bê lêkolînkirin.“





## Piştî 11 salan PDK diçe kongreyê

Partiya Demokrat a Kurdistanê (PDK) piştî 11 salan, di 11'ê vê mehê de, 13. kongreya xwe li Hewlêr a paytexta Herêma Kurdistanê saz dike. Kongre li jêr diruşmên "nûbûn, dadperwerî û bihevrejiyan" û bi beşdariya bêtirî hezar endaman tê lidarxistin. Ji ber ku demek dirêj partî neçûye kongreyê, gelek hêvî bi vê kongreyê ve tên girêdan, yek ji wan jî ew e ku hejmara jinan di postên partiyê de bê zêdekirin. Li gor programa partiyê, pêwîste rêjeya jinan ji sedî 16'an kêmtir nebe û ji ber ku wê serkirdayetiya partiyê berfireh bibe, tê çeverêkirin ku 8 jin bikevin rêvebiriya partiyê.

### Doç. Dr. Zeynep Gambetti ji Beşa Zanistên Civakî li Zanîngeha Bogaziçi:

# Hêza Tevgera Kurd ji bo otonomiyê heye

**Zeynep Gambettî xwediya çendîn lêkolînên li ser otonomiya Zapatîstan e. Ew dide zanîn ku modela otonomiya demokratîk ku Kurd dixwazin, projeyeke cûda û fireh e. Gel dikare xwe bi xwe birêvebibe û bi dil beşdariya biryaran bibe.**



Zeynep Gambetti: "Niha aliyê ku bê hêz e, bi kompleks e, aliyê Tirk e"


**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.



**Medya Deniz**

Doç. Dr. Zeynep Gambetti ji Beşa Zanistên Civakî li Zanîngeha Bogaziçi, ku li ser otonomiya Zapatîstan a li Meksikayê çendîn lêkolînan kiriye, ji Rûdawê re got ku Kurd ji bo otonomiyê beriya her tiştî divê bingeha vê ya civakî, aborî û hiqûqî amade bikin û got, "Tevgera Kurd bi hêza xwe ya civakî û polîtîk dikare vê pêk bîne"

Modela Otonomiya Demokratîk ku siyasetmedarên Kurd ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd anîn rojevê, ev demeke di qada siyasetê de tê nirxandin. Gelo "Otonomiya Demokratîk" çi ye û li kîjan welatan hatiye bicihkirin? Dr. Zeynep Gambetti dide zanîn ku li cîhanê zêdeyî 100 herêm û bajêrên otonom hene û got ku demokrasî û otonomî tiştên cuda ne û divê mirov wan tevlî hev neke û wiha axivî: "Otonomî îro li gelek welatên cîhanê tê birêvebirin. Mînak bajarê Buenos Airesê yê li Arjantînê, bajarekî otonom e. Li Spanya, Çîn, Fînlandiyayê jî hene; lê em nikarin bêjin ku ew demokratîk in. Wateya herêma otonom ew e ku biryarên xwe bi serê xwe digire, ne hikûmeta navendî. Lê divê mirov bipirse, ka biryarên herêmê xwesteka civakê tînin ziman an na? Di Otonomiyên Demokratîk de beşdariya gel a biryaran xurt e."

Gambettî destnîşan kir ku helwesta Kurdan ne tenê otonomî ye, ew herwiha hewl didin xwe ku tiştên ew dixwazin tê de demokrasî hebe û wiha pêde çû: "Modela Otonomiya Demokratîk ku Kurd dixwazin pêkbînin, tiştek gelek cûda û fireh e. Ji demokratîkbûnê wate ew e ku gel xwe bi xwe birêvebibe, gel bi hêz başdariya wê bike. Modeleke alternatîf a siyasî derdixe holê û tişta heyî jî bi xwe re nû dike." Gambettî da zanîn ku Otonomiya Demokratîk azadiya jinan jî tîne û ji bo jiyana aborî jî modelek nû diafirîne û wiha pêde çû: "Divê em ji aliyê wê yê siyasî û huqûqî zêde, li aliyê wê yê aborî binêrin."

### Ezmûna Chiapas û aboriya alternatîf

Ji bo rêkxistina ji jêr ber bi jor ve, Gambetti sîstema ku Zapatistan li herêma 'Chiapas' pêkanîne nîşan da û lêkolînên xwe yên derbarê vê herêmê de wiha vegot: "Dewleta Meksîkî mecbûr ma ku otonomiya ku Zapatîstan li herêma Chiapas pêkanîbûn, qebûl bike. Otonomiya Chipasê bi lihevhatina du aliyan çênebû û çarçova wê ya hiqûqî jî tune, lê otonomiyeke pratîkî ye. Gelê wê herêmê bêyê ku ji dewletê tiştekî hêvî bike, xwe bi xwe birêvedibe û pirsgirêkên xwe çareser dike. Modela ku em karibin jê re bêjin mînak ev e, ne ya Spanyayê ye. Eger em weke mînaka Spanyayê otonomiyê bixin çarçova hiqûqê û wek desthilatdariyeke fermî lê binêrin, wê bibe tiştekî teknîkî. Wê naverok û felsefa wê winda bibe."

### Ezmûna Zapatîstan a li Meksîkayê mînak e

Gambetti da xuyakirin ku ji bo avakirina otonomiyeke demdirêj, aliyê aborî ji aliyê siyasî û hiqûqî girîngtir e û wiha dom kir: "Ji bo ku herêm bibe xweser, jê re çavkaniyên aborî divên. Divê ji niha ve dest bi peydakirina çavkaniyan bê kirin. Di vir de mirov dikare ezmûna Zapatistan lêbikole. Chiapas wek 5 herêmên otonom hatiye veqetandin. Li van hemû herêman, li her yekî derdora 20 an jî 25 şaredarî hene. Di bin wan şaredariyan de jî nêzika 100 gund hene. Rêxistineke wek weşiya tirî ye. Her gundek çi jê re lazim be û bikaribe çi biafirîne, çi bike, bi zelalî diyar dike. Çandiniya zeviyan a kolektîf û komunên gundan hene. Erd bi alîkariya her kesî ango bi cureyê kolektîf tên çandin û di vê demê de hêzeke gelek xurt derdikeve holê. Pêdiviyên xwe heltînin û yê mayî jî naşînin piyasaya kapîtalîst, bi rêya torên alîkariyê belav dikin û difiroşin. Aboriya alternatîf ev e, berhem bi rêya torên anonîm ên kapîtalîst belav nabin, lê bi rêyên ne kapîtalîst belav dibin. Li Spanya, Yûnanîstan û Fransayê alîgirên Zapatîstan hene. Herwiha di nava mezintirîn rêxistina çandiniyê ya alternatîf 'Via Campesina' de cîh digrin."

### Tevgera Kurd di asteke baş de ye

Gambetti têkoşîna gelê Kurd a li Bakurê Kurdistanê bibîr xist û got ji aliyê siyasî û civakî ve ji bo Kurdan pêkanîna Otonomiya Demokratîk tiştek ne zehmet e. Gambetti gotinên xwe wiha domand: "Rêxistin û Tevgera Kurd ji aliyê siyasî û civakî ve, li gor mercên Tirkiyê, niha li cihekî gelek baş disekine. Kurd xwe wek gelekî bindest û bê maf binav dikin, ev jî normal e. Lê dema ku mirov ji Rojava mêze dike, dibîne ku karekî gelek mezin kirine. Niha aliyê ku bê hêz e, bi kompleks e û kêmasiyên wê hene, aliyê Tirk e. Niha bawerî, hêz û zanabûna ku di nava Tevgera Kurd de heye, di ti tevgerekî de tune. Ji ber vê yekê Kurd di gelek aliyan de li pêş in."

Gambetti got ya girîng ew e ku Kurd van serkeftiyên xwe çawa derbasî demên pêş bikin. Gambetti di dawiya axaftina xwe de daxuyand ku guftûgoyên li ser Otonomiya Demokratîk destpêka pêkanîna modeleke demdirêj in û wiha gotinên xwe bi dawî kir: "Ya herî zehmet ji niha û pê ve avakirina vê otonomiyê ye. Li pêşiya Tirkiyê pêvajoyeke demdidirêj a guftûgo û ya lihevhatinan dest pê kir. Ez hêvî dikim ti kes wê deriyê ku vebûye negire. Qels be jî, kêm be jî, ez pêvajoya ku niha destpê kiriye pir erênî dibînim."



Berpirsê UNHCR li Îraqê Charles Lynch bo Rûdawê:

# Rewşa Kampa Mexmûr ji ya kampên din baştir e

**Berpirsê Nivîsîngeha Komîsyona Bilind a Penaberan a ser bi Neteweyên Yekbûyî (UNHCR) li Îraqê, Charles Lynch, red dike ku Tirkiyê daxwaz ji wan kiribe ku penaberên Kampa Mexmûr bişînin Tirkiyê.**



Bi sedan zarokên Kurd li Kampa Mexmûrê bi zimanê kurdî perwerde dibin

**Rûdaw: Tê gotin ku Tirkiyê ligel Hikûmeta Îraq û Herêma Kurdistanê ji bo şandina Kurdên penaber ên Tirkiyê li Kampa Mexmûr hewl daye. Hûn ligel vê yekê ne?**

**Charles Lynch:** Yek ji prensîbên karê UNHCR parastin e, loma karekî me yê giring parastina penaberane ku bi kotekî ji bo welatên xwe neyên şandin. Tirkiyê bi ti awayî daxwaz ji me nekiriye ku wan penaberan vegerînin Tirkiyê, lê Tirkiyê çend caran ragihandiye ku her penaberekî Tirk li Îraqê bixwaze vegere Tirkiyê, ew amade ye pêşwaziya wî bike. UNHCR jî amade ye hevkariya kesên ku dixwazin vegerin Tirkiyê bike. Herwiha em rê nadin penaber bi zorê bo welatên xwe bên şandin.

**Rewşa mirovî ya penaberên Kampa Mexmûr çawa dinirxînî?**

Ger berê xwe bidin rûniştvanên Kampa Mexmûr, piraniya wan li Mexmûr û derveyî wê kar dikin, ti kotekî li ser wan tune û vê yekê hiştiye dahata wan hebe. Nexweşxane û xwendingehên wan hene, li zanîngehan tên wergirtin, av û elektrîka wan jî heye û xizmetguzarî ji wan re tên kirin. Nêzîka 2 hezar kesên ji kampê li derveyî kampê kar dikin,1600 mêr û 400 jin. Herwiha 200 kesên din li kampê kar dikin.

Projeya me ya nûkirina kampê heye û bernameya me jî ji bo hevkarîkirina nexweşxane û xwendingeha wê heye, tevî bernameya me ya civakî. Rewşa jiyana penaberên Kampa Mexmûrê ji rewşa jiyana rûniştvanên kampên din li Herêma Kurdistanê baştir e.

### 3065 penaber li Herêma Kurdistanê hene

**Statîstîkên we derbarê penaberên Îraqê de çi dibêjin?**

Li gor agahiyên me li Îraqê 30 kampên penaberan hene, ku 9 ji wan li Herêma Kurdistanê ne. Herwiha 3065 penaber li Herêma Kurdistanê hene: 1591 kes ji Îranê hatine, 1248 ji Sûriyê û 219 ji Tirkiyê. Ji bilî 7 penaberên din ku ji welatên din hatine. Herwiha jimara koçberên welatên din ku li Îraqê ne 33 hezar û 706 kes e û bi vî awayî dabeş bûne: 10.765 Filistînî, ji bilî 15.515 koçberên Tirk li Kampa Mexmûr, herwiha 7127 koçberên Îranî. Herwiha 267 koçberên Sûrî û 32 kesên din ji welatên din.

**Jimara Filistîniyên ku piştî 2003'an ji Îraqê bar kirine û yên hatin kuştin çiqas e?**

Ev agahî li cem me nînin, lê heta niha 1700 penaberên Filistînî li Îraqê ji aliyê UNHCR hatine tomarkirin, piraniya wan li Bexda dijîn û hinek ji wan li Mûsilê ne û 96 malên Filistînî li kampeke di navbera Sûriyê û Îraqê de, li aliyê Îraqê ne.

**Ji ber çi rewşa Filistîniyan li Îraqê piştî sala 2003'an berbi xerabî çû?**

Ew bûn armanca mîlîsan û hejar in û nikarin xwe biparêzin. Ne piştrast im ji ber çi ew piştî 2003'an bi jimareke zêde tên kuştin, lê dibe ji ber ku wan piştevaniya rêjîma berê dikirin.

### "Em endamên Mucahidînê Xelq wek penaber nabînin"

**UNHCR çawa berê xwe dide penaber û endamên Rêxistina Mucahidînê Xelq a opozîsyona Îranê li Kampa Eşref?**

Kesên ku li Kampa Eşref in ti peywendiya wan ligel UNHCR nîne, em wan wek penaber nabînin. Di 2007 û 2008'an de beşek ji van kesan ji kampê derketin û dest ji çalakiyên hizbî berdan û daxwaza penaberiyê ji UNHCR kirin. Proseseke dûrûdirêj derbas kirin, dûre wek penaber hatin naskirin û ji aliyê UNHCR hatin wergirtin. 200 kes jî ji kampê derketin û çûn derveyî Îraqê û jimareke kêm ji wan li Herêma Kurdistanê wek penaber dijîn.

**Ji ber çi Îraq mafê penaberiyê nade penaberên Kurd ên Tirkiyê û Sûriyê li Îraqê?**

Ev meseleya han di destûra Îraqê de hatiye ronîkirin û eşkere ye ka ji ber çi Îraq mafê penaberiyê nade wan.

***Hevpeyvîn:***
***Hêmin Baban Rehîm***

Eger pirsgirêkên koçberan bên çareserkirin

# Xiristiyan dixwazin li Kurdistanê bimînin

**Newzad Mehmûd Silêmanî**

Bextreşiyên Senaayê ji wê rojê destpê nakin ku Rêxistina El-Qaîde dêra Seydet El-Necat li Bexdayê teqand û fermana kuştina Xiristiyanan derxist. Senaa piştî ku zilamên Seddam mêrê wê kuştin, erkê xwedîkirina 5 zarokan ket ser milê wê: "Ji mêj ve nebûna aramiyê dilê me diguvêşe." Senaa Silêman bi dirêjiya 40 salên temenê xwe hest kir ku jiyana li Bexdayê ji bo wê û zarokên wê nemaye, lewra berî 25 rojan berbi Silêmaniyê hat.

Her çiqasî bûyera 31'ê Cotmeha îsal ku El-Qaîde dêra Seydet El-Necat teqand dengdanek siyasî û mirovî di medyê de da û jiyana dijwar a Xiristiyanên îraqê kir rojeva tevahiya dinyayê jî, lê Xiristiyanên koçber ên ku gihiştin Herêma Kurdistanê dibêjin ku ew ji mêj ve li Îraqê rastî gefan tên û di metirsiyê de dijiyan.

Koçberên Xiristiyan ên ku ji Rûdawê re axivîn, dibêjin tena arîşeya wan li Herêma Kurdistanê xwendina zarokên wan û niştecihbûn e, loma "Ger pirsgirêka xwendina zarokên me û dewama fermanberan û cihê niştecihbûna me nebin, em dixwazin herdem li Herêma Kurdistanê bijîn."

### Nezanîna kurdî pirsgirêkek mezin e

Sekreterê Partiya Demokrat a Keldan, Eblehed Efram, ragihand ku Hikûmeta Îraqê xizmeta fermanberan û zêdebûna meaşê wan naguhêze Herêma Kurdistanê, herwiha di hevpeyvînekê ligel kanala KNN de got: "Xiristiyanên ku ji bajarên Îraqê tên Herêma Kurdistanê bi zimanê Kurdî nizanin, ev jî pirsgirêke ji bo xwendina zarokên wan." Efram rexne li welatên Ewrûpa jî girt ku amadebûna xwe ji bo wergirtina Xiristiyanên Îraqê ragihandine: "Dixwazin Îraqê ji Xiristiyanan vala bikin." Lewra bi baweriya wî hatina wan ji bo Kurdistanê başe, ji ber dibe rojekê vegerin ser milk û malê xwe.

Piştî reva Xiristiyanan, Serokê Herêma Kurdistanê ji aliyên peywendîdar ên hikûmetê re teklîf kir ku komîteyeke bilind ji bo pêşwazîkirina Xiristiyanan bê pêkanîn. Wek ku Rêvebirê Koç û Koçberan ê ser bi Wezareta Koç û Koçberên Îraqê li Silêmaniyê ragihand, Wezareta Navxwe ya Herêma Kurdistanê formek li ser koçberan dabeş kir û li gor agahiyên formê wê xizmetguzarî pêşkêşî wan bên kirin."

Berî koçberbûna Xiristiyanan, 36 hezar malbatên koçber ên navçeyên navend û başûrê Îraqê hatibûn Herêma Kurdistanê, ku ji wan 8857 mal li Silêmaniyê dimînin. Lê bi hatina nêzîka 700 malbatên din ên Xiristiyan, ku 93 malbat berê xwe dane Silêmaniyê, erkê rêvebiriya koç û koçberan li Silêmaniyê dijwartir bû. Rêvebirê Fermangeha Koç û Koçberan li Silêmaniyê Cebar Mihemed Elî diyar dike wan pêşwaziyeke baş li koçberên Mesîhî kir û beşekî wan di dêrê de hatine bicihkirin û beşekî wan jî li malên nas û mirovên xwe ne: "Bi qasî em ligel wan axivîn, eger pirsgirêka dewama wan û xwendina zarokên wan û cihê niştecihbûna wan bê çareserkirin, ew mabûna li Kurdistanê hildibijêrin."

### Ji sedî 96'ê koçberên Silêmaniyê Ereb in

Cebar Elî rexneyan li Wezareta Koç û Koçberan digre û dibêje: "Di reftarkirina ligel koçberên Herêma Kurdistanê û koçberên bajarên din de wekhevî tune. Ji 2009'an ve dînarek tenê ji bo koçberên Herêma Kurdistanê neşandiye." Navbirî wiha axaftina xwe bidawî anî: "Ji sedî 96'ê koçberên li Silêmaniyê Ereb in û piştî 2008'an û heta niha 694 malên Ereb vegeriyane cihên xwe, lê Xiristiyan dixwazin li vir bimînin."

### Bi pereyên Bexda û Diyalayê Erebkirina Kerkûkê destpêkir

# Kurd difiroşin û Ereb dikirin

**Bazirganên zevî û xaniyan li Kerkûkê dibêjin ku Ereb bi kom û bi pereyên zêde xanî û zeviyên Kurdan dikirin. Endamekî civata parêzgehê jî dibêje gava wî kontirola dosyên tapoyê kir, zanî ku Kerkûk tê Erebkirin.**


Di mehekê de 150 xanî û zeviyên Kurd û Turkmenan li Kerkûkê ji aliyê Ereban hatine kirîn

**Newzad Mehmûd**
**Kawe Şêx Ebdulla** Kerkûk

Xwediyên ofîsên kirîn û firotina zevî û xaniyan li Kerkûkê behsa metodeke Erebkirinê dikin ku bi kom xanî û zevî ji aliyê Ereban tên kirîn û malbatên Kurd jî berê xwe didin Herêma Kurdistanê û taxên Kurdnişînên Kerkûkê. Xwediyê ofîsa Nawşiwan li taxa Dumiz dibêje di 3 salên borî de kirîna xanî û zeviyan ji aliyê Ereban zêde bûye: "Ereb xaniyan û Turkmen jî zeviyan bi kom ji Kurdan dikirin."

Ednan Mihemed hevwelatiyekî Kurd e û bav û bavpîrên wî li Kerkûkê jidayik bûne, niha taxa wî bûye taxeke Ereban û ew xwe xerîb dibîne: "Hinek Erebên tundrew dixwazin şerê ku Seddam xilas nekir, li Kerkûkê xilas bikin." Bi baweriya Ednan, nasnameya Kerkûkê di metirsiyê de ye.

### "Êdî Kurd li vê taxê namînin."

Li gor nexşeya ku Xwediyê ofîsa Nawşiwan, Armanc li dikana xwe ya li taxa Dumiz daleqandiye, berî 4 salan ji tevahiya 1500 malan, nîvê wan Kurd bûn: "Lê niha 300 malên Kurdan nemane, dikarim bêjim êdî Kurd li Dumiz nemînin." Nirxê zeviyan li Kerkûkê giran e û parçeyek zevî bi 20 milyon Dînaran e, lê wek Armanc got: "Guh nadin nirxan û bê navber zevî û xaniyan dikirin."

Sebah Mecîd Reşîd ku muxtarê taxa Qadisiye ye bi hêrs û reşbînî diaxive: "Tevahiya Ereban bi navê koçberiyê hatin û dest bi kirîna xanî û zeviyan kirin û perên zêde bi wan re hene." Sebah (55) ku li Kerkûkê muxtarê yekemîn e got: "Gelo mimkûn e koçber bi 55 milyon Dînaran xaniyan bikirin? Min ewqas Ereb girtin û min nehiştiye xaniyan bikrin, ku niha bi tenê newêrim herim sûkê." Navborî rexneyan li hin muxtarên Kurd digre: "Ji Ereban re mor dikin û pereyan werdgirin û ku wiha bidome wê Kerkûk bibe Ereb."

### "Bi navê koçberiyê hatine û xaniyan dikirin."

Kurdên ku nivîsîngehên wan ên kirîn û firotina zevî û xaniyan li taxên ku Ereb di wan de piranî ne, hene, dibêjin Ereb gefan li wan dikin ku ji wir herin. Seyid Xazî ku berê du caran dikana wî hatiye şewitandin û gef lê hatine xwarin: "Ereban dest bi kirîna xanî û zeviyan kir û ji wan bê wê bajar têk bidin." Gazî diyar dike ku Ereb û Turkmenên resen ên Kerkûkê ji van karên bi vî rengî dûr in: "Yan Erebên 10 hezar Ereb in û an jî yên ku bi navê koçberî û li wan qewimiyan hatine."

Çavkaniyekî ewlekariya Kerkûkê bo Rûdawê daxuyand: "Berî demekê hêzên ewlekariyê yên YNK û PDK'ê daxwaz ji nivîsîngehên xanî û zeviyan kirin ku her dosyeke taybet bi xanî û zeviyan bibin hêzên asayîşê, lê nivîsîngeh wiha nakin." Amanc Umer dibêje ku rast e ewlekariya PDK'ê civînek ji wan re saz kir: "me çend caran berpirsên xwe yên hizbî agahdar kirin ku zevî û xaniyên Kurdan li Kerkûkê neman û hemû ji aliyê Ereban hatine kirîn, lê ne xema wan e!"

Haya berpirsên ewlekariyê yên Kerkûkê ji van perên zêde yên Erebên hawirde heye û vê yekê wek armanceke siyasî bi mebesta Erebkirina Kerkûkê dibînin. Rêvebirê Bingeha Polîsên Urûbe li Kerkûkê, Şêrzad Moferî dibêje: "Erebên ku hatine dosyeyên wan ên kirîna xaniyan hene û hinek Ereban xanî bi 60 milyon Dînaran kirîne. Gelo Erebekî koçber ev pere ji ku anîne?" Moferî pêwîst dibîne ku îdareya Kerkûkê û parêzgar êdî rê nedin hatin û niştecihbûna Erebên bajarên din li Kerkûkê: "Eşkere ye ku mebesteke siyasî pişt vê meselê heye."

Xwediyê ofîseke kirîn û firotina zevî û xaniyan li Kerkûkê, ku nexwest navê xwe eşkere bike, diyar kir ku Ereb bi pereyên zêde dosyên xwe çêdikin û berpirsên tapoya bajêr jî rê li ber wan nagrin.

### "Hinek aliyên şoven pereyên zêde anîne Kerkûkê"

Rêvebirê Tapoya Kerkûkê Casim Kerîm red nake ku Ereb li Kerkûkê zevî û xaniyan dikirin: "Têkiliya vê yekê ne bi me, lê bi parêzgar re heye. Ji ber qanûn rê li ber van bûyeran nagre." Madeya 140'ê di navbera Hikûmeta Herêma Kurdistanê û Bexda de wek pirsgirêk maye û pirsa serjimêriyê jî bûye xaleke din a nakokiyê, lê Erebkirin berdewam û berfirehtir dibe. Endamê Civata Parêzgeha Kerkûkê Emed Eskerî got: "hest bi wê yekê dikin ku hinek aliyên şoven perên zêde anîne Kerkûkê û belav kirine da xanî û zeviyên Kurdan bikrin."

Bi baweriya Eskerî, dereng e û divê parêzger û civata parêzgehê ji bo vegerandina Ereban bilivin. Bexda rê nade Civata Parêzgeha Kerkûkê rê li ber van tevgerên Erebên ku bi navê koçberan hatine bigre. Berpirsê Lîjneya Lêpirsîn û Dadperweriyê li civata parêzgehê Îrfan Kerkûklî got: "Bexda fişareke zêde me dike ku bi ti hawî hûrbînî di dosyên kirîn û firotina xanî û zeviyan de nekin. Hinek aliyên şoven li Kerkûkê jî herdem guşaran li me dikin." Îrfan Kerkûklî, ku endamê civata parêzgehê ye jî ser bi Lîsta Turkmen dibêje, gava kontirola dosyên meha 9'an a îsal û tapoya 1 û 2 ên Kerkûkê de kir, rastiya Erebkirina Kerkûkê fam kiriye: "Tenê di wê mehê de 150 dosyên kirîna xanî û zeviyan Kurd û Turkmenan ji aliyê Erebên hatî re hebûn."

Li gor yasa 10'an a sala 2008'an, desthilata Civata Kerkûkê heye kontirola dosyên tapoyan bike: "Lê ji Bexda berdewam nivîsar ji me re tên û nahêlin. Ez wek mirovekî Turkmen bawer dikim tenê Ereb sûd ji vê siyasetê werdigrin û zerer digihe Kurd û Turkmenan. Divê Turkmen jî bizanin ku lihevkirineke siyasî di navbera Bereya Turkmenî û Erebên hatî de heye, nabe em zêdetir rê bidin têkdana bajarê me."

Di hevpeyvîneke berê ya Rûdawê de, Parêzgarê Kerkûkê Ebdulrehman Mistefa red kir ku Ereb bi kom hatibin Kerkûkê: "Rojane Ereb vedigerin." Lê berpirsekî îdareya bajêr ku nexwest navê wî bê eşkerekirin got: "Ebdulrehman Mistefa di odeya xwe de wiha dizane ku Kerkûk Şama Şerîf e."

## Zeviyên Xiristiyanan didin Ereban

**Hêmin Baban Rehîm** Hewlêr

Sekreterê Partiya Demokrata Bêt Nehrên, Romyo Hekarî xuyakir ku Civata Parêzgeha Mûsilê dixwaze zeviyên wan ên li Qeza Qereqoşê bide Ereban û malbatên kuştiyên rêjîma Baasê. Navborî idia kir ku agahdariya hikûmeta Îraqê jî ji vê hewldanê heye, lê Serokê Civata Parêzgeha Neynewa Cebir Ebd dibêje ku wan biryara xwe rawestandiye.

Romyo Hekarî bo Rûdawê eşkere kir ku ev hewldana Erebkirinê ji aliyê parêzgar û civata parêzgeha Neynewa tê birêvebirin: "Erebkirina navçeyên Xiristiyan ên parêzgeha Nînewa bi agahdariya hikûmeta Îraqê birêve diçe." Ew civata parêzgeha Neynewa bi meşandina siyaseteke şoven tometbar dike û dibêje: "Li navçeyên Neynewa ku tê de Ereb nebin, civata parêzgehê xizmeta wê navçeyê nake."

Romyo Hekarî ku wek siyasetvanekî Aşûrî bi plana lêdan û derxistina Xiristiyanan ji Îraqê xemgîn bûye, diyar dike ku berî demekê bi biryareke parêzgarê Mûsilê ji bo dabeşkirina 400 parçe zeviyên li Qeza Qereqoş, ku bidin Erebên derveyî qezayê fermanek derket. "Da ku jimareke zêde ya Ereban bînin vê qezayê û wê Ereb bikin, gelek ji kesên sûdmend dibin Baasî ne û malbaten leşkerên rêjîma berê ya Baasê ne. Lê piştî guşar û fişareke zêde ji aliyê Xiristiyanan, ev biryar niha hatiye sekinandin."

Qeza Qereqoş dikeve 32 km li rojhilatê bajarê Mûsilê, bi navên Bexudêda û Hemedaniye jî tê naskirin, rûniştvanên wê zêdeyî 45 hezar Aşûrî ne, deşteke çandiniyê ye, jimara nahiye û gundên derdora wê 17 ye û di sala 1970'an de bûye qeza.

Serokê Civata Parêzgeha Neynewa Cebir Ebd piştrast kir ku biryara dabeşkirina 400 parçe zeviyên Qezaya Qereqoş rast e: "Biryara dabeşkirina van zeviyan li ser xelkên ji derveyî Qereqoş hebû, lê dû re me biryar sekinand û kar pê nekir." Ligel vê yekê jî Cebir Ebd hewldanek ji bo "Eerebkirina" navçeyan red kir û got: "Ji destpêkê ez ne ligel wê biryarê bûm, ji ber xatirê Xiristiyanan jî me biryar rawestand."

Qaymeqama Qeza Qereqoş Nîsan Kerumî sedemê rawestandina biryarê wiha vegot: "Parastina demografiya navçeyê û rêzgirtina taybetmendiya Qereqoş û xelkê wê ku piraniyan wan Xiristiyan e." Nîsan da zanîn ku 117 kesên ji derveyî qezayê li Qereqoş bi fermana fermî zevî wergirtine û dom kir: "Di warê yasayî de ne guncaw e xelkên derveyî Qereqoş li nav qezayê zeviyan werbigrin, lewma em ligel parêzgar û civata parêzgehê axivîn ku êdî ji derveyî Qereqoş ti kes zeviyê wernegire."

Li gor Hekarî pêkanîna madeya 140'ê wê gelek pirsgirêkên nû û kevin ên Îraqê çareser bike: "Zêdeyî nîvê rûniştevanên Îraqê ji ber van kêşeyan dinalin û bi rêya vê madeyê tên çareserkirin. Ji parêzgehên Neynewa, Kerkûk, Kerbela û Necef heta digihe Diyala, Selahedîn, Wasit û çend parêzgehên din jî bi rêya pêlanîna vê madeyê pirsgirêkên wan çareser dibin. Heta ev sitemkarî ranebe û madeya navborî neyê pêkanîn, aramî û ewlekarî li Îraqê bich nabe."

Karmendê Pirtûkxaneya Duisburgê Yilmaz Seydo bangî Kurdan dike:

# Pirtûkên kurdî diyarî me bikin û werin bixwînin

**Seyîtxan Kurij** Duisburg

Di destpêka salên 1990'an de li bajarê Duisburgê komeke Kurd û Almanan bi navê "Keske - Sor" komeleke çandî- sosyal a kurdî damezirandin. Paşî ji wê komeleyê koma radyo "Dengê Kurdan li Duisburgê" derket. Koma radyoya "Dengê Kurdan li Duisburgê" di sala 1991'an de di radyoya Duisburgê de bi kurdî (kurmancî- kirdkî) û almanî dest bi weşana bernameyên radyoyê kir û heta sala borî ajot.

Komela "Keske- Sor" bi îmkanên xwe pirtûkên bi kurdî û bi tirkî li ser Kurdan kirîn û diyarî pirtûkxaneya Duisburgê (Stadtbibliothek Duisburg) kirin ku di pirtûkxanê de beşa kurdî jî hebe. Wê demê Tirkek demokrat bi navê Tayfun Demir di beşa pirtûkên biyanî de kar dikir. Demir bi dilgermî pirtûkên kurdî girtin û di pirtûkxanyê de kêleka bewa pirtûkên tirkî beşek ji bo pirtûkên Kurdî ava kir.

Qasî salekê ku li pirtûkxaneya Duisburgê Hozanê Kurd, Yilmaz Seydo wek karmend beşa ziman û edebiyata zimanên biyanî kar dike. Pirtûkxaneya Duisburgê di destpêka vê sedsalê de hatiye ava kirin û ji sala 1974'an vir de beşa zimanên biyanî heye. Berpirsiyarê karûbarên biyaniyan ê pirtûkxaneyê Dr. Jan Pieter Barbian e. Li gor ragihandina Yilmaz Seydo di beşa pirtûkên biyanî de ji bilî zimanên ewrûpî bi zimanên tirkî, erebî, slovenî, sirbî, rusî, tamîlî û kurdî pirtûk hene.



Wêneyê jor: Yilmaz Seydo




**Li pirtûkxaneya bajarê Duisburgê beşa pirtûkên kurdî jî heye. Lê her pirtûka ku di salê de herî kêm du caran nehat xwendin, ji nav pirtûkan tê rakirin.**

Wek tê zanîn li eyaleta NRW mafê perwerdebûyîna bi zimanê zikmakî heye. Qasî deh sale mafê dersa zimanê dayikê bi kurdî jî heye. Wek birêz Seydo radigîhîne armanca ava kirina beşa zimanên biyanî peydakirina pirtûkên ders û materyalên din ên dersê bû. Ji hemû zimanên navborî pirtûkên dersê, materyalên alîkar ji bo dersa bi zimanê dayikê û roman hene. Li vir beşa herî mezin beşa tirkî ye. Di beşa tirkî de hemû curên pirtûkan hene. Di beşa kurdî de jî ne tenê pirtûkên dersê her cure pirtûk heye. Ji bilî pirtûkên bi kurdî gelek pirtûken bi zimanê tirkî, lê li ser dîrok û çanda kurdî, pirtûkên polîtk yên kurd jî hene. Li gor ragihandina Yilmaz Seydo, Pirtûkên Kurdî ji weşanxaneyên Avesta, Apec, Vate û Komkar ê tên girtin. eger pirtûkek salekê de du caran neyê xwendin, tê rakirin, ji ber wê Yilmaz Seydo ji xwendawanên Kurd rica dike ku biçin pirtûkan bigrin, bixwînin. Dîsa beşa kurdî ew qas ne dewlemende, lê Kurd dikarin bi diyarîkirina pirtûkan vê beşê dewlemendtir bikin. Yilmaz dibêje ji bo girtina pirtûkan ez biryar didim, lê pirtûkên şerxwaz ku pesna şîdetê didin û propagandaya rasîsmê dikin, qedexe ne.

Gava di navbera salên 2005 û 2007'an de li Bonnê rojnameya "Peyama Kurd" derdiket ew rojname her dihat pirtûkxaneya Duisburgê, lewra li pirtûkxaneya Duisburgê beşa kovar û rojnameyên biyanî jî heye. Niha jî Pirtûkxaneya Duisburgê aboneya rojnameya hefteyî "Rûdaw" e û Kurdên Duisburgê dikarin li vir Rûdaw ê bixwînin.

Pirtûkxaneya Duisburgê bi nivîskaran re rekûpêk şevên xwendinê jî pêk tîne. Bi salane hem nivîskarên Alman hen ji yên biyanî tên ji pirtûkên xwe hin beşan dixwînîn û bi beşdaran re li ser wêjeyê sohbet dikin. Berê birêz Tayfun Demir ji Tirkiyê nivîskar vedixwendin û di nav wan de carna nivîskarên ku koka wan Kurde jî hebûn. Sala borî birêz Seydo hozanvanên Kurd Bejan Matur û Metîn Kaygalak vewxendin. Wan bi dengên xwe helbestên xwe pêşkeş kirin û bi beşdaran re sohbet kirin. Seydo dixwaze di dahatûyê de her sal ji bo çend nivîskarên Kurd şevên xwendina wêjeyê pêk bîne, ew dibêje ku ew ji romanên Yilmaz Çamlibel, Helîm Yusuf hez dike, "ez dixwazim wan bînim Duisburgê, lê divê Kurd beşdarî wan çalakiyan bibin." Gava nivîskarekî Tirk tê qasî 100 kes beşdar dibin, ew jî ji bo şevên wêneyê hejmarek baş e, lê di şevên xwendina nivîskarên Kurd de hejmara beşdaran kêm be, em nikarin wan çalakiyan bidomînin, lewra ez ji Kurdên derdorê Duisburgê rica dikim ku alîkariya me bikin, ji bo ku em bikaribin li vir çand û wêjeya xwe baş bidin nasandin.



Zozan Mecitoglu

Ali Racho

Songül Akpinar

Siamand Amin Muhamad

Biyaniyan nûnerên xwe hilbijartin

## Lîsteya Kurdan karekî serketî meşand

Li gor zanyariyan li Munchenê rêjeya tevlîbûna dengdana ji bo Civata Biyaniyan ji sedî 7,1 bû, dibe ku 3-5 nûnerên Kurd bikevin civatê.

**Reşad Ozkan** Munchen

Roja 28'ê Mijdarê biyaniyên bajarê Munchenê yên ji 57 netewan nûnerên xwe yên di Civata Biyaniyan a wî bajarî de hilbijartin. Li gor daîreya hilbjartinan (Wahlamt) hejmara biyaniyên ku li Munchenê dijîn û xwediyê dengdanê ne 262.562 kes bûn û rêjeya tevlîbûna dengdanê ji sedî 7,1 bû. Di hilbijartinên sala 2004'an de hejmara dengdêran 230.868 kes bû û rêjeya tevlîbûnê ji sedî 5,9 bû. Li gor agahiyên ku bi dest ketin, lîsteya Kurdan "Kurdistan-Azadî Liste 21" wê 3-5 nûneran bişîne Meclîsa Biyaniyan a bajarê Munchenê.

Rêjeya kêm a tevlîbûna Hilbijartinên Meclisa Biyaniyan nîşana wê yekê ye jî ku biyaniyên niştecihên bajarê Munchenê bi baldariyek zêde berê xwe nadin vê înstîtusyonê. Ew bêtir mafê xwe yê dengdana pasîv û aktîv, beşdarî û tevlîkirina demokratîk di her beşê civakî de dixwazin. Encamên dawî wê di 15'ê vê mehê de ji aliyê Lîjneya Hilbijartinan bên eşkere kirin.

Xelata Phonix ya bajarê Munchenê

## Şîrketa Tuna Aktas namzeda xelata aborî ye



**Munchen (Rûdaw) -** Serokê Şaredariya Bajarê Mezin ê Munchenê, Christian Ude di merasîmekê de karsazên esil biyanî bi xelata nû ya bajarê Munchenê, Xelata Phonix, ji bo karên wan rûmet dike. Xelatgir wê ji destê Christian Ude kasekî hunermend Andreas Ohrenschall bi nirxê 3000 Euro wergirin. Kesên xelatgir wê 8'ê vê mehê bên eşkerekirin.

Xelat karsazên esil biyanî ji bo serketina wan a aborî û ji bo xizmeta wan a civakî rûmet dike û bi vî awayî li Almanyayê bêmînak û tekane ye. Berpirsê Lijneya Kar û Aborî ya bajarê Munchenê, Kameran Şiwani ji Rûdawê re got, "Karxaneyên kesên esil biyanî motoreke giring in ji bo aboriya Munchenê. Ew rolekê mifteyî di warê hevnêzîkbûna înterkulturel de dileyîzin. Ew karxaneyên ku em wan xelat dikin, bi xebata xwe ya ji bo întegrasyonê, xwedî roleke mînakî ne."

Di nav wan kesên ku xwedî şansekî mezin e ku bibe xwediyê Xelata Phonix, karsaza Kurd Tuna Aktaş jî heye. Şêwirmenda şîrketan Tuna Aktaş şîrketa "Aktas-Unternehmensberatung" li Munchen rêvedibe. Şîrketa Aktas di Çileya sala 2008'an de ji aliyê Tuna Aktaş û birayê wê Haydar Aktaş ve hatiye damezirandin. Tuna Aktaş û birayê xwe li bajarê Munchenê ji dayik bûne û ji Bakurê Kurdistanê ne.

Endamê Partiya Gel a Lîberal û parlamenterê Swêdê Îsmaîl Kamil:

# Em li Parlamentoya Swêdê 5 kes in, hemû xwe Kurd dibînin

Parlamenterê Kurd li Parlamen a Swêdê dibêje giring e ciwanên Kurd ên ku li wî welatî jidayik bûne, tevlî partiyên Swêdî bibin, ew herwiha eşkere dike ku projeyeke wî ji bo her çar parçeyên Kurdistanê heye û hêvî dike di sala dahatû de wî pêk bîne.

**Rûdaw: Bi baweriya jimareke zêde ya Kurdên Swêdê, bereya çep piştevaniya pirsa Kurd dike. Hûn wek parlamenterê Partiya Gel çi dibêjin?**

**Îsmail Kamil:** Bi baweriya min ev bandora salên 60'an e ku heta niha jî maye. Me ev qonax li paş xwe hiştiye. Wê demê li gor piraniya me ku bereya çep piştgiriya gelên bindest dike û dijî împeryalîzmê ye, fikrên mode bûn lê li gor min siyasetkirina bi mentalîteya wê demê, xeletiyeke mezin e. Bi dîtina min, her Kurdek ku dibe endamê kîjan partiyê, pêwîst e li gor îdeolojiya xwe gavan tevbigere. Pêdiviya me bi hemû aliyan heye, min pir dereng dest bi siyasetê kir li Swêdê. Lê niha parlamenter im. Ev 30 salin Partiya Gel a Lîberal bi awayekî eşkere piştevaniya gelê Kurd dike, mafê çarenûsê bo Kurdan rewa dibîne, wate Kurd bi xwe daxwaza çi bikin. Bawer nakim ti partiyeke din a Swêdî bi vî rengî piştevaniya gelê Kurd bike.

**Di vê dema borî de, li Amedê dadgeha 151 Kurdan hat kirin û ji Swêdê ji bo çavdêrîkirina dadgehirina wan çendîn parlamenter çûn. Çima hûn wek endamekî Partiya Gel neçûn?**

Partiya Gel PKK'ê wek nûnerê tenê yê gelê Kurd nabîne û bawer dike ku xebata çekdarî ne di berjewendiya gelê Kurd de ye. Lewra bi awayekî eşkere piştevaniya PKK'ê nekiriye. Derbarê dadgeha Amedê, daxwaz ji min jî kirin beşdar bibim, lê wek parlamenterekî nû, kar ewqasî bi ser hevde kom bûbûn ku min nekarî beşdar bibim. Ev nayê wateya ku Partiya Gel piştevaniya siyasetvanên Kurd ên ku hatin dadgehkirin nake. Partiya Gel yekemîn partiya Swêdê ye ku daxwaz kir divê lêkolîn bê kirin li ser wê yekê ku çekên kîmyayî dijî gerîllayên Kurd hatine bikaranîn an na. Ti partiyeke din wiha bi eşkere daxwazeke bi vî rengî nekiriye. Herwiha berî çend salan, nûnerê Partiya Gel li YE daxwaz kir dema diyalog ligel Tirkiyê bê kirin, divê nûnerekî Kurd jî amade be.

**Pirsgirêka penaberên Kurd li Swêdê hê didome. Heta niha bi dehan penaberên Kurd bi zorê bo Başûrê Kurdistanê hatine şandin. Helwêsta we çiye?**

Li gor Partiya Gel, ev siyaseteke xelet e, lê divê bizanin gava partiyek tevî hikûmetê dibe, nayê wateya ku hemû tişt bi dilê wê dibe, dema partiyek di opozîsyonê de be dikare gotinên qelew bike lê di pratîkê de tiştekî neke, em ji vê polîtîkayê ne razî ne, lê nikarin hemû tiştî bikin. Mînakeke din a Partiya Gel ew e ku pêdagiriyê dike li ser vekirina konsolxaneyekê li Herêma Kurdistanê, me partiyên din neçar kirin ku vî karî bikin, herwiha me daxwaz jî kir ku divê konsolxane zêdetir bibe fermî û di paşerojê de wek balyozxaneyekê kar bike. Pêdiviya me bi sazkirina lobiyekî Kurdî-Swêdî li parlamentoya Swêdê heye. Loma pir kêfxweş bûm ku îsal 5 Kurd ji her çar parçeyên Kurdistanê bi ra û nerînên cuda bûn endamên parlamentoya Swêdê.



**Biyografî**

*Îsmail Kamil di sala 1970'î li bajarê Amudê yê Rovajayê Kurdistanê jidayik bûye. Niha parlamenter û endamê Partiya Gel a Lîbaral a Swêdî ye. Kamîl Geolojî û Dermansazî xwendiye û mamosteyê zanîngehê ye. Berê rêvebirê tendirustî yê Herêma Uppsala bû. Xwe wek keskî liberal dibîne.*

**Bêguman hilbijartina 5 Kurdan nîşana pêşkeftina Kurdan li Swêdê ye, gelo ev ji bo gelê Kurd bi giştî girîng e?**

Mixabin Kurdên ku di salên 1970 û 80'an de hatin Swêdê, dereng tevlî partiyên Swêdê bûn, lewra girîng e ku ciwanên Kurd ên ku li vir jidayik bûne, tevî partiyên cuda yên Swêdê bibin. Hebûna her Kurdekî di her cihekî nazik de, reklameke baş e ji bo gelê Kurd. Mixabin dema em hatin derve, me wiha hizr dikir ku çend salên din wê Kurdistan rizgar bibe û em ê vegerin, lewra gelek ji me ji dêr û hem ji mizgeftê jî man û me stratejiyeke çewt hilbijart. Tê bîra min wê demê çend Kurdek bûn endamên Partiya Çep, me hemûyan rexne li wan digrtin ka çima tevlî partiyên Kurd nabin, lê em şaş bûn û ew rast bûn. Me ew qonax derbas kir. Îro Kurd çalak in, daxwazên gelê Kurd rewa ne. Niha li parlamentoya Swêdê em 5 kes in, em hemû xwe Kurd dibînin û ti tişt nikare me ji hev dûr bike. Her yek ji me ji bo piştgirtina gelê Kurd kar dike.

**Plana we ji bo karê hevbeş ligel parlamenterên Kurd ên din çi ye? Ji bo pêkanîna grûpeke parlamento ligel her çar Kurdên din ti xebatên we hene?**

Ev du-sê hefteyên ku me li parlamento dest bi kar kir, têr nakin. Bi baweriya min baştir bû ku di nav komîsyonên parlamento de em çend kesek bûna, lê mixabin tenê ez di komîsyona polîtîka derve de me. Kurdên din ji bo vê komîsyonê nehatine dyarkirin, lewra wek erkê xwe dibînim ku yekemîn insyatîfê bikim. Piştê ku karên rûtîn xilas bibin dixwazim ligel Kurdên din dest bi danûsitandinê bikim.

**Tê gotin ger planeke baş a partiyên siyasî yên Kurdan bi giştî hebûna, belkî 10 Kurd tevî parlamentoya Swêdê dibûn? Hûn karkirina partiyên Kurd li vir çawa dibînî?**

Ger hemahengî hebûya, ji dêlva tenê ez li Uppsala biserkevim, sê Kurd bi serketa, lê hevalên din li Uppsala, tevî ku 3 hezar Kurd li vî bajarî dijîn 200 deng anî. Divê komele û partiyên Kurd piştîvaniya kesekî bikin ku dizanin wê biserkeve û nehêlin dengên Kurdan belawela bibin. Wek mînak, li Stockholmê Evîn Çetîn jimareke zêde ya dengan anî, lê ji ber ku di partiyeke mezin de ye biserneket, lê bi dengên Evîn Çetîn dikarîbû du parlamenterên Kurd ên din çê bibin. Sîstem wiha ye, çiqasî partiya te biçûk be, derfeta te zêdetir dibe.

**Projeya we ya pêşerojê ji bo 4 salên bê li ser doza Kurd çi ye?**

Projeyeke min ji bo her çar parçeyên Kurdistanê heye. Hêvî dikim di sala 2011'an de pêk bînim. Bawer dikim ji bo her parçeyên Kurdistanê tîmeke taybet amade bikin baştir e. Wê gavê karibin konferansên mezin saz bikin. Wek mînak li ser Kurdistana Tirkiyê xelkê ji derveyî Swêdê vexwînin, pişt re jî bo parçeyekî din ê Kurdistanê tiştekî wiha bikin.

***Hevpeyvîn: Kawe Emîn***

# Girtîgeh li Bavê Noel qedexe ye

PEN a navnetewî bi rêya kartên pîroziya sersalê têkiliyê bi nivîskarên girtî re datîne û ji rewşa wan agahdar dibe.

**Stockholm (Rûdaw) -** Her serê salê PEN a navnetewî, bi organîzasyona Komîteya Girtîgehan, ji bo endamên xwe yên girtî kartan dişînin zîndanan. Îsal li Swêdê Mala Nivîskaran jî beşdarî çalakiyê bû û bi PEN a Swêdê re di 2 û 3'yê vê mehê de ji Stockholmê name ji bo girtiyan avêtin postê.

Lê Navenda PEN a navnetewî PEN'ên hemû welatan hişyar kiribûn ku kartên wan ne kartên bi wêneyê Bavê Noel bin, ji ber hin welatên Misilman dibe ku kartên bi wêneyên Bavê Noel nekin girtîgehan û nekevin destên girtiyan. Loma hemû nivîskaran kartên bi wêneyên gul, xweza û Stockholmê ji nivîskarên girtî re şandin.

Ji PEN a Swêdê Seroka Komîteya Girtîgehan Azar Mahlorjian da diyarkirin ku divê hemû nivîskar bêtir piştgiriyê bidin wan û xwedî li nivîskarên girtî derbikevin, ji ber ew tenê ji bo azadiya ramanê parastine hatine girtin. Mahlorjian bi ser axaftina xwe ve zêde kir û got: "Dibe ku em niha tiştekî biçûk dikin, kartan ji nivîskar û rojnamegerên girtî re dişînin, lê ev çalakiya me ya biçûk ji bo girtiyan wateyeke mezin e. Ew bextewar dibin ku em wan ji bîr nakin û em li pişta wan in. Bi vê hêncetê em têkiliyê bi wan re datînin û ji hev agahdar dibin. Gelek ji wan bersivê didin kartên me, daxwaza me ji hemû nivîskaran heye ku bersiv bidin navendê ku em derbarê rewşa wan de bêtir bibin xwedî agahî.



Nivîskarên Swêdî ku gelek Kurd jî di nav wan de hene, ji bo girtiyên endamên xwe yên li Tirkiyê jî kart û name şandin. Wek sembolîk îsal ji bo hevjîna Hrant Dînk, Rakel Dînk, Ragip Zarakolu û Muharrem Erbey kart hatin şandin. Mahlorjian li ser rewşa Erbey jî axivî û got: "Em ji bo doza Erbey jî çûn Diyarbekir, lê me nikarîbû herin serdana wî li girtîgehê. Me tenê li salona dadgehê dît, bi dîtina me kêfxweş bû û bavê xwe nîşanî me da ku em bi wî re biaxivin. Em hêvî dikin ku azadiya hemû nivîskar û rojnamegerên girtiyî nêzîk be.



# Ciwan aqilê xwe xwariye?

Produktorekî Norwecî jiyana Ciwan Haco û çûyîna wî ya Amedê kir belgefîlm. Haco derbarê eşqa xwe ya Amedê de dibêje: “Min zanibû wê Amed rojekê bê vê qonaxê.“

**Fatma Savci**



Ev demek dirêj e ku stranbêjê Kurd ê naskirî Ciwan Haco li Ewrûpayê dijî. Jiyana Ciwanê ku niha li Swêdê dijî û çuyina wî ya Amedê ya ewil niha jî bû mijara fîlmekî dokumenter. Dokumentera ku ji hêla Swêdî û Norwêciyan ve hatiye çêkirin, wisa xuya ye ku wê gelekî deng bide û bala civaka Kurd û Ewrûpiyan jî bikşîne. Dokumentera bi navê “The Road to Diyarbekir“ (Li ser rêya Diyarbekir) ji aliyê Geir Netland û Peter Forsgren hatiye çêkirin û derhêneriya fîlm jî Zerdeşt Ahmed kiriye. Dokumenter îsal beşdarî ‘Festîvala Fîlman a Bergen’ jî bû û eleqeyeke mezin dît.

Ciwan Haco li mala xwe ya li Swêdê qala çîroka dokumenterê ji me re dike û wiha dibêje: "Ev cara yekem e dokumenterek li ser min derdikeve. Me ti plan ji bo wê nekiribûn. Lê dema cara pêşî ez ê biçûma Diyarbekir min telefonî Zerdeşt kir. Zerdeşt Kurdekî Silêmaniyê ye, min got ez diçime Diyarbekirê, ma tu nayê, ji bo tv'yên Kurdan em dokumenterekê çêbikin. Camêr got baş e. Piştî ku vegeriya, wêne li Diyarbekir, Stenbol û li mal kişandibûn. Dûre çû ev wêne û dîmen nîşanî produktorekî Norwêcî dane. Piştî produktorê Norwêcî van dîmenan dibîne, dibêje ev dikare bibe fîlmekî gelekî baş. Yanî me bi henekan destpêkir, bû rastî. Produktorê Norwecî çar milyon Kron ji bo vê projê teklîf kirin. Ev pereyekî baş e ji bo dokumenterekê. Sponsor Stv ya Swêdî û Ttv ya Norwecî bûn."

### Televizyona El-Cezîre jî dixwaze dokumenter biweşîne

Ji ber ku dokumenter behsa wê dema ku Ciwan Haco di 2005’an de cara yekem dikeve ser rêya Amedê dike, navê belgefîlm danîne "Li ser rêya Diyarbekir" e. Dokumenter ji dema ku Haco ji mala xwe ya li bajarê Gävle ye ji cem zarok û hevjîna xwe derdikeve rê destpêdike û ber bi welat diçe û heta digihije ser dika qada Newrozê û ji milyonek mirov re distire, didome. Beriya ku belgefîlm biqede, carekê li Hewlêrê hatiye weşandin. Televizyona El-Cezîre ya erebî jî daxwaz kiriye ku belgefîlm di kanala xwe de biweşîne.

Lê derdê Ciwan Haco ew e ku li vî bajarê ku ji bo wî stranên xwe afirandine, li ser dikan qêriye û ji bo wî kiriye hawar, were nîşandayin. Haco wiha daxwaza xwe vedibêje: "Ji sedî sed ez dixwazim ev dokumenter li Diyarbekir were nîşandan. Ev dokumenter li ser jiyana min a Ewrûpa û çûyina min a Diyarbekirê ye. Ji xwe navê dokumenterê ‘Li ser rêya Diyarbekir’ e. Diyarbekir ji bo min bi mane ye. Qêrîneke min a ji zû de ji bo Diyarbekir heye. Çima ez ewqas ji bo Diyarbekir diqîrim? Derdekî min heye ku evqas sal in ji bo Diyarbekir diqîrim. Di vê belgefîlmê de jî ez xwedî mebest im. Mebest ne tenê ew e ku jiyana min a şexsî were vegotin. Bi vê dokumenterê em dixwazin ku rewşa jiyana Kurdên koçber, hunermendên li durî welat û rewşa Kurdan bi giştî were ber çavan. Em bi vê yekê dixwazin ku minaqeşeyek li ser rewşa Kurdan çêbibe. Di fîlm de jî gelek mijar hene, wek mesela nasnameyê. Mesele pîreka min Îslandî ye, ez Kurd im. Wê zarokên me bibin çi? Pirsên wiha jî hene di dokumenterê de."

### “Ew qêrîna min ne belaş bû...”

Tevî ku me di stranên Ciwan Haco de ew eşqa bajarê Amedêkdîtiye û jiya ye jî, em carek din çavkaniya wan hestên kûr û Kurd dipirsin. Em li sedema wê qêrîna bilind digerin. Ciwan dibêje: “Ew qêrîna min, strana min ya ji bo Diyarbekir ne belaş bû, ne vala bû. Min zanîbû ku wê rojekê Diyarbekir were vê qonaxê. Ji zaroktiyê destpê dike ev hestên min ên germ li hember Diyarbekir. Wexta em hatine Binxetê, hertim di nav malbatê de behsa Bakur dihate kirin. Behsa cihê bav û kalên me bû. Mêrdîn bû, Midyad bû, Mizîzex bû. Diya min behsa cihê xwe Botan, gundê xwe Tilê dikir. Dilê me bi wir ve mabû. Niha stranên min ji bo hemî bajar û herêmên Kurdistanê ne. Li ku bûyerek qewimî be, ez li ser stranan dibêjim. Mînak beriya çend salan li Nisêbînê sêzdeh xortên me hatin kuştin, min li ser Nisêbînê stra. Li Qamişlo 36 însanên me hatin kuştin. Min di sê rojan de, stran ji bo Qamişlo çêkir. Dema ez çûm Diyarbekir min strana evîniyê digot, lê ez diqêriyam min digot: Diyarbekir! Hinekan digot: Ciwan aqlê xwe xwariye. Na min aqilê xwe ne xwaribû. Min zanîbû ku ez çi dikim, çi dibêjim. Min zanîbû ku wê Diyarbekir rojekê were vê qonaxê. Vê qonaxa ku bi milyonan werin cejna Newrozê bi hev re pîroz bikin. "

Ciwan li ser Newroza 2005’an ku milyonek mirov beşdar bûbû û wî li wir konser dabû diaxive û wiha dibeje: "Ew banga min, ew hawara min cihê xwe girt. Bifikire ku bi milyonan mirov hatin qada Newrozê. Ew milyon ne ji bo min, hatibûn. Yan jî ne ji bo filankes tên. Hîç eleqa wê bi vê re nîne. Li wir daxwazên Kurdan derdikevin pêş, tarîxa wan, cografya wan, nasnameya wan, zimanê wan, Kurdistan derdikeve pêş. Wan mirovan doza tiştekî li wir dikirin. Doza heqê xwe dikirin. Rastî tiştekî ecêb e ku tu milyonek însan bînî cem hev. Erê ez çûme Batmanê, ez ê bêjim sed hezar însan ji bo xatirê min hatibê. Lê ez nikarim milyonek însan bidime hev. Ev meseleyek di vê de heye. Ne ez û ne ti dengbêj nikarin vê yekê bikin. Ne ku ji bo dengê min tên, li tembûra min guhdarî bikin. Na. Tên ji ber ku Kurd in, ji ber ku meseleyeke wan heye tên. Tên ji ber ku dixwazin azad bibin."

### CD’ya 15. tê amadekirin

Em ji Ciwan dipirsin tevî ku wî her bi kurdî strandiye, gelo çima Swêdî û Norwêciyan belgefîlm amade kirine? Ew hinekî diponije û paşî wiha dibêje: "Min heta niha çi kiribe, bi xwe kiriye. Kesekî heta niha piştgirî nedaye min. Min 14 album derxistine lê pereyên wê ji berîka xwe dane. Ev rastiyek e. Eger ez niha li bendî Kurdan bisekinîbama, dibe ku min yek CD dernexistibana. Ez niha ya panzdehan derdixim. Divê vê pirsê yek ji Kurdan û saziyên wan bike. Ez behsa organîzasyon û dezgehên Kurdan dikim, ne ku qala gel dikim. Ez li bendî wana nema me û ez piştî vî emrî jî li bendî wan namînim. Lê pirsek mezin e, baş e çima wê Swêdî û Norwêcî alîkariya fîlmê min bikin, lê çima Kurd nekin? Lê divê tu vê pirsê herî ji partî, sazî û dezgehên Kurdan bikî ku êdî gelekî bi xwe ve mijul in. Bi rastî pereyên wan hene, ji her tiştî re pere hene. Tiştek ji muzîkê bêhtir erzan nebûye. Her tişt li Kurdistanê biha ye lê muzîk tenê erzan bûye."

# Neviyê Eyûbî daxwaza mîrata bapîrê xwe dike



Eger li Misrê rêyên hiqûqî nemînin, wê Mensûr Çelebî serî li Dadgehên Ewrûpî bide.

**El-Cîwar (Rûdaw) -** Neviyê Selahedînê Eyûbî Mensûr Çelebî ragehand ku li mala xwe li başûrê navçeya Sa`îdê ya Misrê û li parêzgeha Qina ku 700 km ji Qahîre dûr e, sandoqeke kevin dîtiye ku hinek nivîsar tê de hene û li gor van nivîsaran ew mîratxwerê serkirdeyê dîrokî Selahedînê Eyûbî ye.

Mîratê Eyûbî wek rojnameya El-Ehram a Misrî li ser zimanê Çelenî belav dike, tenê li du cihên Misrê digihe 8750 feddan –ku her feddanek dike 450 metroyên çargoşe- ku li ser navçeyên Qenna, Hewarî El-Nehasîn û El-Yehûd ên Qahîre de dabeş bûye. Mensûr Çelebî ragehand ku li gor van nivîsarên rewa yên li ber destê wî, dikare îspat bike ku ew neviyê Selahedîn e û got bi tu hawî dest ji mulkên xwe bernade ku li Sûriyê digihe 7 hezar, li Lubnanê digihe 40 hezar û li Urdunê jî digihe 20 hezar feddanan.

Çelebî diyar dike ku mulkên taybet ên Misrê ku navenda dewleta Eyûbî bû, li navenda Ebûteşt li Qenna digihe 20 hezar feddan, ji bilî 3 hezar feddanan li derdora derya sor û 10 hezar feddanan li Mensûre û Erîş û 8 hezar feddanên din ku niha di bin destê Wezareta Ewqaf a Misrê de ne.

Menûsr Çelebî kelehê jî yek ji mulkên xwe dibîne, lê dibêje ew kiriye weqfa xêrê, lewra ji serokwezîrê Misrê re agahdariyeke fermî şandiye ku ji dahata geştyarî ya vê kelehê dewlet meaşekî mehane jê re veqetîne.

Neviyê Selahedîn ku ev 20 sal in ji bo wergirtina mafên xwe serdana dadgehan dike dixwaze xwe bigihîne cem Emîndarê Giştî yê Komkara Erebî Umro Mûsa da ku li dadgehên navdewletî hevkariya wî bike.



# Beriya Tofanê xelat wergirt

Karahan heta niha derhêneriya gelek kurtefîlman û reklaman kiriye. Beriya ku fîlmê xwe yê demdirêj ê yekem bikişîne ezmûna Foucault û Delûze tîne bîra xwe û hêz dide xwe...

**Stenbol (Rûdaw) -** Kurtefîlmê "Beriya Tofanê" ku bi derhêneriya Ferît Karahan hatiye kişandin, di mihrîcana Kurtefilmên Navneteweyî ya Stenbolê de xelata sêwirî (çêkirî) ya herî baş wergirt.

Karahan naveroka kurtefîlm wiha vedibêje: "Filmê Beriya Tofanê bi gotineke pirtûka pîroz Tewratê destpê dike, ‘Ez ê mirov, heywan, çivîk û kurm û kêzikên ku min afirandine li ser ruyê erdê bimalim.’ Fîlm li ser desthilatdariyê ye. Desthilatdariya Xwedê ya li ser cîhanê, mirovan, desthilatdariya dewletê ya li ser civakê, ya bav li ser malbatê û zarokan. Û mayina di vê sêgoşeya baviksalarî de ya keçikek biçuk ku beriya pê li mayinekê bike û bimirê."

Karahan ê ku di sala 1983’an de li bajarê Muşê hatiye dinê û di 2006’an de zanîngeha Marmarayê qedandiye, di gelek kurtefîlman de derhêneriya dîmenan kiriye. Lê ev fîlmê wî yê yekem e ku bi serê xwe derhênerî kiriye û dibe ku vê xelatê ew kêfxweş kiriye û bêhtir bawerîya wî xurt kiriye. Karahan ji 2007’an ve di şîrketeke bi navê "Avrupa film" de wek derhenêrê reklamê dixebite. Ew dibêje ku vê ezmûna kar gelek alîkarî daye wî û wiha didomîne: "Beriya ku ez fîlm bikêşim, min hemû sahe û plan bi destan xêz kirin. Min estetîka fîlm li ser lîstin û dirêjahiya wê sêwirand û min got, ‘ez çawa reklamê dikim, ez ê wisa fîlm çêbikim.’ Divê ez li xwe mikur werim ku bandora nivîskarên wek Foucault û Deluze li min bû. Yanî bi vî hawî: tu reklaman çêdikî û paşî ew şêwazê ku tu pê reklaman çêdikî filmekî kurdî pê çêdikî. Ev her du tişt ewqasî ji hev dur in, hem wek teknîk, hem wek şêwaz.



Dîmenek ji filîma ‘Beriya Tofanê’

## “Kî pere dibîne, ew dibe derhêner”

Wezareta Çandê ya Tirkiyê alîkariya madî jî di nav de, piştgiriya hinek fîlman dike. Karahan dibêje ku wî ji bo vî fîlmê xwe piştgirî negirtiye, lê Wezareta Çandê ji bo projeyên "nerm" dibe alîkar: “Qet nebe di dema dawî de cudahiya Tirk, Kurd, Lazan nake. Lê têkiliyên pereyan li vê qadê desthilatdar e. Dîtina pereyan gelek zehmet e. Kî pere dibîne, ew dibe derhêner. Li ser vê cografyayê kar wisa tên meşandin mixabin. Wisa xuya ye ku pêwistî bi demê heye, ji bo ku sînemeya Kurd ciyê xwe bigire, çêkerên wê peyda bibin, bazara wê bibe xwedî bingeh. Karsaz û sponsor li kesên melaq digerin. Em jî niha li amûrên ku em pê li berxwe bidin û têbikoşin digerin.”

## Fîlmê xwe diyarî zarokan dike

Karahan ê ku bi du hevalên xwe re senaryo nivîsiye dibêje, Beriya Tofanê ne bi şêwaz û nêrîneke propagandayî hatiye nivîsîn û wiha didomîne: "Sînema ji bo civaka me tiştekî nû ye. Bi taybetî di nav Kurdan de sînema gelek nû ye. Kêm kes diçin sînemayê, daxwaza fîlmên komêdî û yên demogojî li pêş e. Divê nêrîneke hunerî bibe desthilatdar û ez bawerim ku ev ê pêşbikeve. Em hîna nû ne û li serî ne. Dem ji me re divê. Loma hem yên ku fîlm çêdikin, hem jî yên temaşe dikin kêfxweşî û coşeke cuda dijîn. Fîlmê min eleqeyeke gelekî baş dît. Ji ber ku fîlm polîtîk bû tesîr li ser xelkê kir û ji bo ku referansa xwe ji felsefê û mîtolojiyê jî digirt û bi nêrîneke çandî hatibû hûnandin, di festîvalan de eleqeyeke mezin dît."

Di merasîma xelatê de Karahan li ser dikê wiha gotibû: “Fîlmê min ji bo zarokên ku li Tirkiyê û hemû cîhanê stembar in hat çêkirin. Ez vê xelatê diyarî zarokên ku hîna li ser xaka Kurdistanê stembar dibin dikim."

| LÎSTIKVAN | | DERHÊNER û ÇÊKIR |
| --- | --- | --- |
| Taies FARZAN | Zilan ALKAN | Ferit KARAHAN |
| Ömer ŞAHİN | Turgut OK | |

***Festîvalên ku Kurtefîlmê "Beriya Tofanê" tevlî bû:***

- *17. Adana Altin Koza Film Festivali Akdeniz Ülkeleri Kisa Film Yarişmasi -Tirkiye*
- *22. Uluslararasi İstanbul Kisa Film Festivali- Tirkiye*
- *I've Seen Films International Film Festival - Milano/ İtalya*
- *Brno Sıxteen Internatıonal Fılm Festıval –Komara Çekya*
- *JCI İSTANBUL CROSSROADS 5. Uluslararası Kisa Film Festivali*
- *IV. SİNEPARK Film Festivali- Tirkiye*
- *Süleymaniye Kadın Filmleri Festivali-2010 Îraq*
- *3.th Paris Kurdish Film Festival-Paris/ Fransa*

Hekîm Sefkan



# Kurdî bi kurdî xweş e

Di zimanan de, dikarin gelek peyv weke hev bin, tîpek du tîp guhertî bin jî, dikarin pir nêzîkê hev bin. Ji xwe miletên ji yek olê, yan jî ji yek erdê pir peyvên wan weke hev in. Wek nimûne peyva "şer" peyveke erebî ye, li hemberî wê, peyva "xêr" heye, lê "şer" weke ku di kurdî de tê bi karanîn, di erebî de nayê bikaranîn. Heta di kurdî de, ji şer gelek nav û rewş jî derketin, wek; "şervanî" "şerxawzî" "şerûd" "şerbaz" "şerzan" û wekî din.

Dîsa, peyvên ku dikarin di gelek zimanan de bê bi karanîn, kes nikare wan peyvan bikin ên xwe. Eger peyvek di zimanê mirov de tune be, mirov bi hêsanî kare ji cîranan bigre.

Lê di kurdî de, wek nimûne eger ku peyvek di kurmancî de tunebe, mirov dikare li dimilî, hewramî, soranî veger. Heta di her şêweyekê de bi dehan devok hene, lê tevî her tiştî ku, di destê me de heye, em herin peyvên biyanî bikarbînin, di nerîna min de di derbarê zimên de guneheke mezin e.

Mixabin ku vê rojê ev yek pir bi tof e. Bi taybetî komên dûblajê yên ku ji TRT 6 û Kurd 1 re dixebitin, ziman weke ku li mala xwe diaxivin wiha jî bi kar tînin.

Di jiyana rojan de li gelek herêmên Kurdistanê ziman şaş tê axavtin. Hinek peyv çewt, hinek kêm tîp, hinek bi wateyên din tên axavtin, li hinek herêmên kurmancî cudahî di navbera nêr ê mê de tune, ev bi taybetî, li hinek herêmên Amedê, ber bi Mûş û Serhedê ve pir belav e. Ev zor e ku mirov di demeke kin de bughere, lê ku di nivîskî de, yan jî wek dûblaja belgefilm û filman de bê bikaranîn, bi yek gotinê nezanî ye.

Sedema ku min ev nivîs weke dubare nivîsand ev bû ku Kurdên Amedê, di bi karanîna peyvên erebî de pir serhişk û kêfxweş in.

Amed kare di dîroka Kurdan de xwedî cihekî taybet be, lê şêweya Amedê tije şaşî ne. Gel dikare bi şêweya xwe biaxive, heta nivîskar an jî kesên ku karên çandî dikin, dikarin di jiyana rojan de wek xwe biaxivin lê ku hat û ew kar ji tevaya Kurdistanê re bê pêşkêşkirin divê herêm bê ji bîrkirin, ji ber ku ji bo tevahiya Kurdistan e.

Mixabin Kurdên Bakur ku diçin Başûr û tên fêrî erebî dibin, bakurî wiha texmîn dikin ku ew peyv kurdî ne, ji ber ku ne tirkî ne ji wan re balkêş tê. Di siteyên bakuriyan de ev pir bi tof e.

Peyva "Mekanên Qedîm" yan jî "Filmên Qedîm" sedema yekemîn bû ku min ev nivîs da destê xwe. Ez tê nagihêjim çima Amedî di peyva ‘Qedîm’ de serhişk in û divê ku bikarbînin.

Me ji durişmeyên we hezkirin, we tv û site û rojnemeyên ku bi tirkî weşanê dikin rexnekirin, me got "ê weleh"; heta we partiyên kurdî ji bo bikaranîna tirkî rexnekirin me serê xwe ji rexneyên we re tewand. We got her tişt bi kurdî xweş e me ji we re li çepikan da, lê we tiştek ji bîr kir: kurdî bi kurdî xweş e.

### Necatê ku Kejal kuşt û bi benzînê şewitand, ji girtîgehê ragihand:

# Ez poşman im, lê sûda poşmaniyê tune

**Çemçemal (Rûdaw) -** Piştî nêzîkî 9 mehan ji kuştin û şewitandina Kejalê, kujerê wê yê bi navê Necat ket destê polîsên Çemçemal. Necat ji bo Rûdawê ragihand: "Dema min Kejal kuşt serxweş bûm , ewqasî poşman im ku nikarim behs bikim, lê êdî çû û venagere."

Necat dema dirêj ku xwe veşartibû, li bajarên navend û başûrê Îraqê şoferîya kamyonê dikir, niha jî, li gor madeya 406 li girtîgeheke Silêmaniyê zindankirî ye. Polîs û dadwerê lêkolînkirina bûyerê, wê gumanê dikin ku Necat pêştir plana kuştina Kejalê kiriye, ji ber ku roja kuştinê qudiyeke banzînê di sandoqa otombîla wî de bû û bi wê banzînê agir berdabû laşê Kejalê.



## "Min ji radyo nûçe bihîst"

Necat çîroka nasîn, kuştin û şewitandina termê Kejal di 6'î Çile ya 2010'an de, li cihekî kevin ê artêşa Îraqê di navbera qezaya Çemçemal û nahiya Tekiyeyê de, vegot. Li gor axaftina Necat ji bo polîsan, dema ew û Kejal gihiştine cihê leşkerî yê kevin, wan şer kirine: "Ligel kesekî din bi telefonê diaxivîm, ji nişkave Kejal kevir avêtin min, min telefona xwe girt û hers ketim û jê re got çima wiha dikî, lê wê her kevir davêtin. Min nedixwest destê xwe pê bikim, lê ji bo tirsandinaê, min bi demançê guleyek teqand, lê yekem gule li bin çengê wê ket."

Piştî kuştin û şewitandina termê wê, Necat rasterast vedigere Çemçemal û di heman şevê de xwe digihîne Kerkûkê, dû re jî diçe Bexda û Feluce. Piştî 3 rojan li Feluce ji radyoya Newa dibihîze ku termê Kejal ê şewitî hatiye dîtin. Li gor gotinên Necat rojekê piştî kuştina Kejal, wê kur xalekî xwe agahdar kiriye ku termê Kejal li filan cihî ye, dû re polîs tên ser term û dest bi lêkolînan dikin û birayên Kejalê digrin.

Necat behsa destpêka nasîna xwe ligel Kejal dike. Xalê Necat projeyekî xwedîkirina teyrikan birêve dibe û ev çend sal bû Kejal ligel çend keç û jinên din di vî projeyî de kar dikirin. Rojekê Necat li ser daxwaza xalê xwe, karkeran dibe Çemçemal.

Ew roj dibe yekem hevdîtina Necat û Kejal, êdî ji vir şûnde têkiliyeke evîndariyê destpê dike û nêzîka 3 salan dirêj dike.

"Bi dirêjiya wê dema ku em bihev re bûn, destê min negihaye destê wê, pir hurmeta xwe digrt, qet min tiştekî xerab lê nedît, lê herdem pêdagirî dikir ku divê herim xwazgîniya wê. Roja ku min ew kuşt jî, digot divê ligel xalê xwe were xwazgîniya min."

Ew roja ku roja dawî ya jiyana Kejal bû, li bazara Çemçemal li otombîla Necat siwar dibe û ji bajar derdikevin. Necat wiha axivî "Berî ku telefonê min bike, min li cihekî mey vedixwar, wê got emê herin derve. Dema min dît wê pêşniyar kir em herin cihê leşkerî yê kevin di navbera Tekiye û Çemçemal, heta wê demê min ew cih nedîbû. Gava em gihiştin wir telefonek ji min re hat, ligel kesê ku telefon kir axivîm, lê ji nişkave û ji pişt min ve Kejal kevirekî mezin li nav milê min xist, pişt re kevirekî din avêt min, dema min berê xwe dayê nav çavê min bi xwînê tije bû û serê min jî şikênand."

## "Tawanbar ji bo kuştina Kejalê planeke pêşwext danîbû"

Berpirsê Polîsên Qeza Çemçemal Komîser Dara Ebdulla diyar kir dema wan Necat girt, wî birin heman cihê ku lê tawan qewimî. Li wir Necat hemû tiştî ji polîsan re dibêje. Dema jê dipirsin te çima ew kuşt? Dibêje "Xwedê ez dîn kirim." Lê Komîser Dara bi guman berê xwe dide gotinên Necat: "Dadwer jî bawer dike ku Necat berê plana kuştina Kejal danîbû, loma benzîn ligel xwe biribû û dema kuşt jî ji ber çi termê wê şewitandiye?"

Necat jî bi her hawî red dike: "Dema kevir davêtin min, digot ji ber çi tu ji xalê xwe re nabêje da bê xwazgîniya min. Da ku wê bitirsînim min berê demançeya xwe da wê da ku guleyekê nêzîkî wê berdim, lê Kejalê di wê demê de rahişte kevirekî û serê xwe tewandibû, loma guleya yekê li ber çengê wê ket, lê bi birîndarî jî kevir davêtin min."

Li wê çolê, Necat bi sê guleyan dawî li jiyana Kejal tîne û benzînê li ser termê wê direşîne: "Dema min Kejal kuşt, benzîn bi ser da kir û agir berda laşê wê û çûm." Dema polîs û dadwer jê pirsîne, ji ber çi te Kejal kuşt û şewitand? Gotiye "min ew şewitand da ku termê wê neyê naskirin."

Wendabûna Necat nêzîka 9 mehan domand. Di rojeke Cotmeh a îsal de dema vedigere Kerkûkê, hêzeke polîsan wî digrin û tînin Çemçemal. Necat dibêje: "nû min nas kir ku fêda veşartin ê tune, bêyî ku şimaqekê li min bidin min hemû rastî gotin, poşman im ku min Kejal kuştiye, lê êdî çû û venagere, çi sûda poşmaniyê heye?"

**Selah Hesen Palewan**



## *Hikûmet ji kuştina jinan berpirsiyar e*

Dûşema borî rojnameya Şarqulewsat raporeke New York Times a bi zimanê erebî weşand û tê de amaje bi wê yekê daye ku di navbera salên 1991-2007'an de nêzîka 12 hezar jin li Kurdistanê li ser meseleya namûsê hatine kuştin. Nivîskar û berpirsên Kurdistanê ragihandin ku hejmara jinên kuştî nagihe 12 hezaran.

Carina di rojnameyan de dibêjin ew gotarên dijî Herêma Kurdistanê tên nivîsandin destek li pişt wan heye û dibêjin hejmara jinên kuştî li Kurdistanê ne rast e. Dema tu bêdeng bî, ma çi cudahiyek heye ger mirovek yan sed mirov li ber çavê te bên kuştin? Çi cudahiyek heye ger tu hemberî ruhê mirovekî yan sed mirovan, tenê temaşevan bî? Ger di 8 salan de, 12 hezar hatibin kuştin yan 2 hezar çi ji meseleya parastina ruhê mirovan diguherîne. Êdî kesên ku yasa vî welatî wek kesên mêrsalar, mêrperest, mêrwezîr, mêrdesthilatdar û mêrrêvebir danîbe, ji xwe divê herdem parastina yasa mêranî û namûsperestiyê bikin, heman ew parêzer û desthilatdarên mêr in ku li ber çavên wan serê jinan bi blokan tê pelixandin û çavên wan tên derxistin û hetika wan dibin, ti tiştî nabêjin. Her wan komeleyek bi navê rêxistina parastina jinan daniye, lê weke din yasa mêran dimeşînin.

Dema kesek tê û di rojnameyeke biyanî de dengê xwe li ser giyanê hozperestî û mirovkujî û biçûkxistina jinan bilind dike, ewqasî bi awayekî komîk bersivê didin ku gunehê mirov bi van mêran tê, dibêjin: Ev hejmar ne rast e, kuştin ne bi vî awayî bû ku hatiye behskirin, destê van kesan nebû di kuştinê de.. Lê behsa wêya nakin ku dezgeh û dewlet ji bo razîkirina simbêl û heybeta hoz û eşîrê li xwîna hezaran jinên wek Dûa, Zara, Benaz û Sirwe xweş dibin.

Şerm ji Kurdbûna xwe dikim, ji ber li vir tiştê herî dawî ku hizir li ser tê kirin mirov bi xwe ye! Bêrêzî, biçûkxistin û sivikirina jinan bûye karekî sade û ji rêzê. Bi dehan jinên Kurd ji ber pirsgirêka pisîkolojîk dinalin, bi sedan mêr li ber çav û li pişt çavên jinên xwe xiyanetê li wan dikin û bi awayekî ji awayan pirjiniyê bikar tînin.

Heman ew mêrên îro yasayên welat gotûbêj dikin, bawer dikin ku rojnameyên cîhanî dibêjin 12 hezar jinên Kurd li Herêma Kurdistanê hatine kuştin, êrişê ramana netewî û pêkhateya me ya netewî dikin, lê exiyaneta mêran beramber jinên wan ku li Kurdistanê tê kirin û jinan li girtîgeha mal, bazar, tax, dezgeh, xwendingeh, bajar, gund û bajarokan difetisînin, li ser pêkhateya mirovê Kurd ne destdirêjî ye.

Ger beşekî girîng ê mirovên te hest bi girtîgeh û tirs û xofê bikin, ev gefeke li ser pêkhateya netewî. Bi xutbeçiyên mizgeftan ku piraniya wan bi awayekî veşartî piştevaniya kolekirina jinan, bêrêzîkirin û biçûkxistina wan dikin, welatek tije kirine. Gelo ev ne gef û binpêkirina pêkhate û mirovê netewî ye?

Li gor min, ecêb e li welatekî ku yasa hebe, yasayên mêr û jinan cuda bin. Ecêb e ku polîs û siyasetvan sitargeh û kampên parastin û mezinkirina mêran bin, lê ji jinan re tirsonek bin, li ber çavê yasa û desthilatê yasa paqijkirina rûmetê û tolvedana ji jinê!

Bimeşe, gelo ev ne destirêjî ye li ser azadî û mafê mirov û jinan? Dibe kesek derkeve û bêje evê han ji ber çi Kurdistanê dike dojeh, ji ber çi mezinbûnê dike. Êdî razî me ku kesek wiha li ser min bibêje, lê kîjan jin li vî welatî dikare bi azadî tevbigere, here kafeteryayekê, evîndariyê bike, rexne li bav û birayê xwe bigre? Jiyan ne tenê di çarçova malê de ye, her kesê bixwaze çi bike dike, wek ku kesek bêje "mala min e ez ê bişewitînim û birûxînim, karê kesî bi min tun ye!" Niha di qanunên nûjen de ne mafê te ye tu mala xwe bikî wargehê binpêkirina kesên xwe, êdî ew kes keça te yan xuşka te yan jina te be. Li Kurdistana me, li gund û bajarokan hoz namûsê paqij dike û pişt re li termxaneyan hikûmet meytan paqij dike. Çîrîsk ji simbêlên kujeran tê û bi şanazî çîroka paqijkirina rûmetê vedibêjin.

Li malan bav û bira, jin û keçan binpê dikin, hikûmet jî napirse gelo ji ber çi rewşa pisîkolojîk a van keçan aloz bûye û ruhê wan bûye girtîgeh. Ger her kesek bi kêf û bi vîna xwe xwe bikuje, wê çi cudahî hebe ligel daristanê? Her kesekî ji bo ruh, jiyan û mirinê yasaya xwe hebe, ji bo çi wê ev welat vê butçeya mezin li ser maf û saziyên jinan xerc bike? Ger parlamento nikare yasayekê derxe û rê li ber kuştinê bigre, ji ber çi divê civînan lidar bixe û serê me, we û welat jî gêj bike?

## Ji bo 376 zarokên ku ji aliyê dewletê ve hatine kuştin

# Tu jî bibe Çav!



Li Stenbolê gelek aktîvîst ji bo zarokên kuştî meşiyan



Ceylan yek ji 376 zarokên e ku bi çekên leşkeran hat kuştin

**Medya Deniz**

Li Tirkiyê zarokê yekem ku ji aliyê dewletê ve hatiye kuştin Ramazan Dag e bû. Dag di sala 1988'an de hatibû kuştin. Hejmara zarokên ku hatine kuştin îsal giha 376: Ceylan Onkol, Ugur Kaymaz, Ramazan Diren tenê sê-çar navên zarokan e ku di nava şer de jiyana xwe ji dest dane. Ji bo ku zarokên hatine kuştin neyên jibîrkirin grûpek rewşenbîr û aktivîst însyatîfek bi navê "Tu jî bibe Çav" damezirandin. Însyatîf dixwaze balê bikişîne ser wê yekê ku ew zarok bi qeza nehatine kuştin.

Li ser navê însyatîfa navborî Sevim Altan a ressam ragihand ku tenê îsal 14 zarok di bûyeran de jiyana xwe ji dest dane û got: "Însyatîfa me di 21'ê Mijdara 2009'an de bi taybetî ji bo zarokên Kurd ku ji aliyê hêzên dewletê ve hatine kuştin, hat damezirandin. Em dixwazin dawî li kuştina zarokan bînin û bala raya giştî bikişînin ser van bûyeran."

Sevim Altan dibêje kuştina zarokan ne diyardeyeke nû ye, lê di dîrokê de jî hertim qewimiye û ji bo wan ti lêkolînên hiqûqî nehatine kirin. Altan got ku ji aliyê hêzên dewletê ve ji sala 1989'an ve 376 zarokên Kurd hatine kuştin: "Hêzên dewletê ev zarok ne bi şaşî, lê bi zanatî kirine nîşan û kuştine. Bi guleyên qezayê an bi guleyên serserî nehatine kuştin. Hinek ji wan li ber mala xwe dileyîstin û bi guleyên leşkeran hatine kuştin, hinek di bin panzeran de pelizîn, hinek jî wek zaroka 18 mehî, Mehmet Uytun, bi bombeyên gazê hatin kuştin."

Berdevka însyatîfê Sevim Altan bêdengiya raya giştî jî wek şirîkiya kujeran binav kir û bang li mirovên hişyar kir ku bêdeng nemînin û ji bo zarokên kuştî bibin wek çavekî.

Sevim Altan daxuyand ku eger aştî bê Tirkiyê, divê beriya her tiştî zarok di nava ewlekariyê de bijîn: "Zarok pêşeroja me ne. Welatê ku pêşeroja wî bi guleyan bê kuştin, nikare aştiyê pêkbîne, ji ber ku ew welat sûcdar e. Werin wan zarokên kuştî wek zarokên xwe bibînin û hewl bidin xwe ku êşa malbatên wan fahm bikin. Ji bo zarokên din neyên kuştin, werin em bibin çav ji wan re."

---

### Di 9 saliyê de ji ber laliyê ji xwendingehê derxistin

## Henar ji ber ku meaşê wê qutkirin xwe şewitand

**Sinûr Mecîd** Silêmanî

Bextreşiyên Henarê di temenê 9 saliyê de destpêkirin, dema ew di pola 5'ê bingehîn de bû mamosteyê wê ew şand mal, ji ber lal bû û nikarîbû biaxive: "Dema Henar hat mal pir giriya, zêde dixwest bixwîne, lê ji ber ku lal bû nehiştin bixwîne." Diya Henar, Xedîce Mihemed vê yekê vedibêje piştî 9 salan ji derxistina Henarê ji xwendingehê û keça wê xwe şewitandiye.

Xwe şewitandina Henar Ebdulla (18) di roja 10'ê-Mijdara 2010'an de li gundê Qulereysî yê bajarê Silêmaniyê, ji çîrokên keçên ku dawî li jiyana xwe tînin, cuda ye, ji ber wê dawî li jiyanekê anî ku nedikarî tenê axaftinekê tê de bike û lal bû, di malbatekê de ku xûşk û birayekî wek xwe hebûn.



Henar Ebdulla

Wek diya wê behs kir, berî demekê meaşekî kêmendaman ji Henarê re hat veqetandin: "Henar 4 caran ev meaş wergirt, dû re lîjneya pizîşkî got ti pirsgirêka wê tune û ne kêmendame, lewra meaşê wê rawestandin." Henar zêde bi vê yekê xemgîn bû: "Rewşa wê ya pisîkolojîk xerab bû, herdem digriya û digot perên xwe dixwazim û kom dikim ji bo biçim heccê." Xedîce Mihemed derbarê Henarê bi xemgîniyeke mezin dibêje: "Çend caran me ew bir Îranê ji bo dermankirinê, lê digotin baş nabe."

Xwe şewitandina Henar, wek bûyereke tehl û bi azar daniye ser dilê mala wê û herdem axînê ji destdana keça xwe ya lal dikişînin. Bavê Henar, Ebdulla Salih destê xwe davêje bêrîka xwe û kaxezekê jê derdixe, ku roja xweşewitandina Henar li ser hatiye nivîsandin: "Roja ku xwe şewitand bi rojî bû jî, dema hatibû malê tenê xûşka wê ya lal a din li mal bû, loma wek derfet dît û xwe şewitand."

Bavê Henarê ji ber ku giriyekî zêde li ser keça xwe kiriye, çavekî wî kor bû û ava spî jê tê: "Piştî ku Henar zanî ku meaşê wê hat rawestandin û careke din wernagire êdî bi tevahî bêhêvî bû û jiyan li ber çavê wê reş bû."

Henar ji maleke kêm dahat bû, pir bi hêsanî ji axaftina mala xwe fam dikir û di warê bihîstinê de ti pirsgirêka wê nebû, mirov eke îmandar bû, lê ji ber fişarên pisîkolojîk xwe kuşt, ku întîhar di Misilmantiyê de wek tawana kuştinê tê danîn.

Xizmên wê dibêjin, Henar li malê pir îşker û jêhatî bû. Dayika wê got: "Ji ber ku lal bû, ti hevaleke wê nebû, herdem li mal bû."

---

**Tendirustî**

## Estetîka bêvilê



Dr.Gulnaz Dermirtaş

Peyva estetîk zanyarê Alman Alexander Gottlie Baumgarten di sala 1750'an de cara yekem bikaraniye û li ser estetîkê wisa gotiye: Estetîk zanistiya hestên xweşik e û hunera ponijandina li ser bedewiyê ye. Têgîna estetîkê gera tiştê bedew e. Peyva estetîk ji yûnanî tê û wiha tê bilêvkirin: aisthesis, aisthanesthai bêjeya aisthesis tê wateya bihîstin, têgihîştin û hestan.

**Hûn dikarin li ser estetîka bêvilê çi bêjin?**

**Dr. Gulnaz Dermirtaş:** Dema ku em dinêrin bi rastî jî gelek sedem hene ku mirov bêvila xwe ameliyat dikin. Ev ji ber nexweşiyê jî dibe; gelek kes hene ku nikarin baş nefesa xwe bidin û bistînin. Carina septum ne rast e, bêvil bilind e, goştê zêde di bêvilê de heye. Wextê ku septum ne rast be û goştê zêde di bêvilê de hebe, hingê ji ber wê sînuzît çêdibe. An jî bêvil şikestibe hingê pêwistî bi ameliyatkirina bêvilê tê dîtin. Herwiha gelek kes hene ku ji bo bedewiyê jî xwe dixin bin ameliyatê. Yê ji bêvila xwe nerazî ne serî li rêbaza estetîkê didin û xwe bi bêvila ku hat estetîkkirin rihet hîs dikin.



**Zirar û başiyê estetîka bêvilê çi ne ?**

Bêvilek normal a li gor rûyê mirovan dive ku ne ji 1/3 perçê rûyê mirov be. Dema ku zêde be hingê li rûyê mirov nayê û mirov ne delal tê xuyakirin. Hinek kes hene bêvilê wan an dirêj e, fireh e, bilind e, an jî xar e. Ev hemû psîkolojiya mirov xirab dikin. Li gelek welatan di ameliyata bêvilê de ya ji bo estetîkê sîlikon an jî perçeyên heywanan tên bikaranîn. Ev jî rîzîkoyek mezin e ku di dema pêş de înfeksiyon bigre. Û dibe ku forma bêvilê ne li gor hêviya yekî çêbibe. Ji ber wê dixwazim destnîşan bikim kesê ku bixwazin estetîka bêvilê çêbikin divê baş bifikirin. Ji ber ku piştî bê ameliyat kirin êdî mirov nikare paşde vegerîne.

**Ew organê bi bêvilê re girêdayî çi bandor li wan dibe?**

Sinus organa ku bi bêvilê re girêdayî ye; ango sînus û bêvil bi hev re girêdayî ne. Wextê ku girêdana wê tê xitmandin, goştê zêde an jî septum ne rast be, yan forma bêvilê ne rast be av dikeve navê û dernakeve. Hingê ji ber wê serêşandin çêdibe. Ameliyata bêvilê bandorê baş li wan organan dike û serêşandin kêm dibe. Bi ameliyata bêvilê re dibe ku heta çend roj an jî çend mehan ew hîsê bêhnkirin û tamkirinê tê de nebin. Carina dibe ku piştî ameliyata bêvilê ew hîsê bêhnkirin û tamkirinê bi temamî jî winda bibin. Xeterên wisa jî hene û ku estetîka bêvilê çêbike divê wan hemûyan bide berçavê xwe.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

*Dr.Gulnaz Dermirtaş ji Bakurê Kurdistanê ye. Niha li Holanda dijî. Bijîşka Guh, Bêvil û Qirikê ye.*



Birêvebirê TRT-6'ê Fethullah Kirşan:

# Ti tirseke me derbarê ziman de tune

## Rêvebirê TRT-6'ê pirsên Rûdawê yên derbarên îdiayên karmendê berê yê TRT-6'ê Rengîn Elçî jî bersivandin




**Biyografî**

*Fethullah Kirşan di sala 1967'an de li navçeya Êlihê, Kercewsê hatiye dinyayê û bi eslê xwe Kurd e. Di sala 1992'an de di TRT'ê de dest bi karê nûçegihaniyê kiriye. Ji destpêkê ve di karên avakirina TRT-6'ê de cîh girtiye. Sala borî di meha Îlonê de bû Rêvebirê Giştî yê TRT-6'ê û niha jî vî karî didomîne.*

Birêvebirê televîzyona ku 24 seetan weşana kurdî dike, TRT-6'ê, Fethullah Kirşan, ji Rûdawê re behsa pirsgirêkên xwe, rewşa TRT-6'ê ya niha û projeyên xwe jê pêşerojê kir.

Kirşan ragihand ku ew ê di nêzîk de bi teknîka anîmasyonê dest bi weşana vegotina destanên wek Mem û Zin, Rustemê Zal û Kawa bikin. Kirşan derbarê hinek bernameyan de jî wiha axifî: "Em ê danasîna portreyên rûmetên her du gelan, ên Tirk û Kurdan, ên wek Ehmedê Xanî, Feqiyê Teyran, Saîdê Nûrsî, Mele Mustefa Barzanî, Mevlana, Yunus Emre, Mehmet Akif Ersoy û Mevlana Bexdadi bikin."

Kirşanê ku di odeya xwe ya nivîsingehê de kanalên wek ROJ TV, Kurd 1, Kurdistan TV û kanalên din ên kurdî dişopîne, ragihand ku wê di demeke nêzîk de Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyip Erdogan wek mêvan beşdarî bernameyeke siyasî ya TRT-6'ê bibe.

**Rûdaw: TRT-6 di 1'ê Çileya 2009'an de dest bi weşanê kir û di nêzîk de dikeva sala xwe ya duyem. Dema ku hûn her du salên borî di ber çavan re derbas bikin, tabloyeke çawa dibînin?**

**Fethullah Kirşan:** TRT-6 bêhtir ji ber pêdiviya hevwelatiyên me yên Kurd derkete holê. Li ser daxwaziya Serokwezîrê me xebatên vê weşanê hatin destpêkirin. Piştê xebatên 3-4 mehan, Serokwezîr bi gotinên "Bi xêr be" start da û weşanên me di 1'ê Çileya 2009'an de destpê kirin. Di demên pêşîn de hinek tengasiyên me çêbûn, lê bi demê re me ew çareser kirin, niha ti tengasiyeke me tune.

**Hûn rastê tengasiyên çawa hatin?**

Kurdî nebûye zimanê perwerdê, çandê û hunerê û hûn radibin bi zimanekî wiha weşanê dikin. Ji bilî vê, kêmasiya hevkarên ku kurdî baş dizanin hebû. Lê ev kêmasî gav bi gav hatin çareserkirin. Îro êdî sektoreke ku dikare dublaja bi kurdî bike, derketiye.

### "TRT-6 xwedî bingehek hiqûqi ye"

**Hin kes dibêjin ku bingeheke yasayî ya TRT-6'ê tune, weşana korsan dike. Gelo bingeha yasayî ya TRT-6'ê heye?**

Ev gotin hemû ne rast in, ji bo TRT-6'ê guhertinên yasayî hatin kirin. Herwiha di Yasaya TRT'ê ya hejmar 2954'an de ji bo weşana zimanên li derveyê tirkî jî guhertin hatin çêkirin. Ango bingeha yasayî heye.

**Gelo derbarê temaşekirinaTRT-6'ê de ti lêkolînên we hene? Kanala we çiqas tê temaşekirin?**

Derbarê temaşekirina kanalê de em hertim çalak in; em rasterast ji hevwelatiyan dipirsin, ji me re SMS, mail û telefon tên û em encaman ji van diyardeyan derdixin. Niha asta ku em tê de ne gelek baş e. Di destpêkê de derbarê nefahmkirina kurdiya me hinek rexne dihatin, digorin em fahm nakin. Zehmetiyeke wiha heye di kurdî de ku her herêmek devokek wê heye. Mînak kurmanciya ku li Diyarbekir, Batman û Urfayê tê axaftin û ya ku li Wan, Bîngol û Mûşê tê axaftin cudahiyên devkî hene.

**Ji bo ev cudahiyên devkî ji nava Kurdan rabin û zimanekî hevbeş bê çêkirin, gelo ti rola weşanên we heye?**

Li Tirkiyê Kurd bêhtir bi zaravayê kurmancî diaxivin. Di kurmancî de jî cudahiyên devkî yên herêmî hene. Em hewl didin xwe ku zimanekî her kes karibe fahm bike, bikarbînin. Ji SMS, mail û telefonên ku ji me re tên, em dikarin bêjin ku em serketî ne.

### "Piştî 3 hefteyan em dest bi nûçeyên zindî dikin"

**Di maîlan de ji we çi tê hêvîkirin?**

Hêviyek ji wan, derbarê nûçeyan de bû. Me nûçe ji bandê diweşand, ev ji bo kesekî wek min ku ji karê nûçegihaniyê te, ne rast dihat. Me çareseriyek dît. Piştê sê hefteyan, ango ku em têkevin 3. salvegera xwe, em ê dest bi nuçeyên zindî ku bêjerek dibêje, bikin. Em plan dikin ku rojê çar caran nuçeyan bidin. Yek, sibehê wê naveroka rojnameyan bê xwendin, bûyeren ku li Tirkiyê qewimîne hinek bi kurtahî bên dayîn; ya duyem, wek 10-15 deqeyan, nava rojê em ê nuçeyan bidin, wê êvaran jî di saet 19.30'de kurmancî û di saet 23.00'an de bi zazakî nûçeyên me hebin.

**Cara yekem li Tirkiyê weşana sitcomê we kir. Gelo eleqe ji vê rêzefilma we re heye?**

Sitcom ji bo me tiştekе yekem bû. Li Tirkiyê rêzefîlmê yekem bû, wek em pê hesiyan li cihanê jî yê yekem e. Derbarê 4 hefteyên pêşîn de me gelek encam standin, baş hatiye temaşekirin. Em pê kêfxweş bûn, eger bi rêya fîlmekî be jî, bi rêya sitcomekî be jî, eger em gelê xwe bidin kenandin.

**Hûn difikirin ku wezîrên Kurd ku niha di hikûmetê de cîh digrin, vexwînin bernameyên xwe?**

Wezîrê Darayî Mehmet Şimşek û Wezîrê Tendurustiyê Recep Akdag berê hatibûn. Em dixwazin bi beşdarbûna Serokwezîr re dest bi vexwendina kesên siyasetmedar ên di bernameyan de, bikin. Em ê pê re bernameyekê çêkin û bangê wî bikin, herwiha li gor rojevê em ê bangî Bulent Arinç û wezîrên din jî bikin.

**Yek hevkarên we yê berê Rengîn Elçî ji Rûdawê re ragihand ku we bi mebesta ku ROJ TV bikartîne, çendîn peyvên, wek "komar, artêş, aram, çalakî" qedexe kirine. Gelo rast e, qedexeyeke wiha heye?**

Na tune. Ti tirseke me derbarê ziman de tune. Hinek ji wan gotinan paşê ketine nava Kurdî. Em li ser vê mijarê bi Zanîngeha Artuklu re kar dikin, peyvên ku em wan nas nekin, ji wan dipirsin. Eger di ziman de peyvên wiha hebin, em mêze nakin ka kî bikartîne yan na.

**Têkiliyên we bi Enstîtûya Kurd a Stenbolê re çawa ne?**

Bi rastî bi wan re jî çend caran têkiliyên me çêbûn lê em nehatin cem hev. Em dixwazin bi wan re jî di nav têkiliyan de bin. Pêwendiyên me ligel Zanîngeha Artuklu hene, lê bi Enstîtûya Kurd a Stenbolê re jî em dixwazin danûstandin çebin.

### "Em kêfxweş in ku kanalên kurdî zêde bibin"

**Hûn qet kanalekê ji xwe re reqîb dibînin?**

Na tune. Dunya TV jî dest bi weşanê kir ku weşana wan berfireh e; em dixwazin kanalên wiha zêde bibin. Xweziya kanalên din jî vebûna û reqebet çêbûya. Ji ber ku cihê lê reqabet heye, tiştên xweş derdikevin. Ez hebûna kanalên din dewlemendî dibînim.

***Hevpeyvîn: Firat Baran***

## Projeyên nû hene

**Fethullah Kirşan:** "Em ê di demeke nêzîk de dest bi pêşbirka stranên kurdî bikin. Navê pêşbirkê "Strana xwe beje" ye. Em ê ne tenê ciwanên li Tirkiyê, herwiha ji Îraqê, Sûriyê û Erûpayê jî ciwanan vexwînin studyoya xwe ya li Tepebaşi ya Stenbolê. Kesê ku di pêşbirkê de bibe yekem wê wek xelat bibe xwedî xaniyek.

- Em ji meha Cotmehê pê ve maçên Bank Asya ya Liga 1. zindî diweşînin. Bêhtir maçên tîmên herêmê em didin. Kesên ji sporê hezdikin ev du heyfe ne dikarin heman maçê bi kurdî an jî bi tirkî temaşe bikin.
- Em amadekariya bernameyek bi navê "Dîtin û Raman" dikin ku tê de mijarên li Tirkiyê û li cihanê diqewimin, guftûgo bikin. Wê di vê bernameyê de heftê carekî civaknas Mazhar Bagli, Kevneparlamenter Alaattin Firat, Nivîskar û Rojnamevan Erdal Şimşek, siyasetmedar Sertaç Bucak beşdar bibin.
- Hewiha wê bernameyên dîrokî û çandî hebin. Di hefteyên pêşî de em ê bi rêya animasyonan destanên Mem û Zin, Rustemê Zal û Kawa biweşînin.
- Li aliyê din em ê danasîna portreyên ku ji bo Tirk û Kurdan xwediyê rûmetê ne, wek Ehmedê Xanî, Feqiyê Teyran, Saidê Nûrsî, Mele Mistefa Barzanî, Mevlana, Yunus Emre, Mehmet Akif Ersoy û Mevlana Bexdadî bikin.
- TRT-6 ev sê meh in ku êdî li ser Nilesat'ê jî tê weşandin; temaşevanên me li Rojhilata Navîn wê êdî bi hêsanî karibin me temaşe bikin. Em ê ji bo Kurdên Îraq, Sûriyê û yên li Ewrûpayê jî bernameyan çêkin."

# Emser Kurdîstan de varitî nêvara

Emser Kurdîstan serra xo ya tewr ziwa de yo, payîzî her çar parçeyanê Kurdîstanî de yan varitî qet nêvara yan zî zaf kêmî vara



Emser Kurdîstan de ziwayî zêde ra ya

**Dîyarbekir (Rûdaw) -** Emser Kurdîstan serra xo ya tewr ziwa de yo, payîzî her çar parçeyanê Kurdîstanî de yan varitî qet nêvara yan zî zaf kêmî vara.

Muawînê mudirê meteorolojîyê mintiqa yê Dîyarbekirî Mehmed Yergînî derheqê ziwayîya emserî de va, "Her serre dereceyê sewîyeya normale yê germîya Dîyarbekirî aşma teşrîne de 9.6 o. La dereceyê emserî yê germîya Dîyarbekirî yê aşma teşrîne 11.1 bi. Hewna, goreyê serranê verênan her serre aşma teşrîne de 54 kilogramî şilî Dîyarbekir de varayêne la emser qet nêvaraye." Mehmet Yergînî, dewamê qiseykerdişê xo de da zanayene ke teşrînê serra 1970 de zî Dîyarbekir de qet şilî nêvaraya.

Mudirê meteorolojîyê Mêrdînî Zekî Tekînî zî da zanayene ke aşma teşrîne de Mêrdîn de qet şilî nêvaraya û wina dewam kerd: "Mudirîya ma 71 serre verê cû ronîyaya. Coka reqemê 71 serran destê ma de estê. Emser mîyanê nê 71 serran de serra tewr ziwa ya. Her serre 11 aşman de teqrîben 700 kîlogram şilî varayêne la 11 aşmanê emserî de Mêrdîn de tena 269 kîlogramî şilî varaya."

Serekê odaya zîretî yê Bismîlî Heybetula Ayî zî da zanayene ke welatê ma de emser tehlukeyê ziwayîye esto, coka citêrê ma zaf teredud de yê û va: "Tayê citêranê ma serê aşma oktobre de tov eşto hêgayan la nêzdîyê di aşman o ke şilî nêvaraya, coka mehsulo ke zîl dabi, heme bi huşk. Eke nê hewteyanê ma ra ver de şilî bivaro zî ancax se ra pancasê tovî xelisêno. Mi emrê xo de hende ziwayî nêdîya. Citêrê ma wazenê duaya varite bikerî. Ez hêvîdar a ke na ziwayî nêbo sedemê felaketêk."

Serekê odaya zîretî ya Mêrdînî Malîk Ozkan zî vano, "Serra 2008î zî ziwayî bî. A serre wisarî şilî nêvarabî la emser payîzî nêvara. Bi no qayde tov do binê herre de bimano. Emser destpêkê aşma oktobre de tayê citêranê ma tov eşt hêgayan. Eke nê hewteyê vera ma de şilî nêvaro, tovo ramite heme huşk beno."

Muftîyê Mêrdînî Mehmed Kizilkayayî zî da zanayene ke zafê muxtarê dewan û citêran înan ra teleb kerdo ke duaya varitî bikerê.

Rewşa parçeyanê bînan yê Kurdîstanî zî eynî wina ya. Roja îneyê peyênî yê aşma oktobre Kurdîstanê Başûrî de Yewîyîya Zanayanê Dînî yê Kurdîstanê Başûrî bi hemkarîya Wezaretê Dîyanetî 30 şaristananê Kurdîstanê başûrî de seba şilî duaya varite kerde.

## Se ra 15ê nufûsê Dîyarbekirî seqet ê



**Dîyarbekir (Rûdaw) -** Bi munasebetê Roja Seqetan ya Cahanî ke roja 3 kanûne ya, hetê Platformê Seqetanê Dîyarbekirî ra yew kombîyayîşê çapemenîye ame organîze kerdene. Berpirsîyarê Komela Dezgeyanê Taybetan yê Perwerdeyî Selîm Kaplanî kombîyayîş de qisey kerd û da zanayene ke hûmara seqetanê Dîyarbekirî rêjeya seqetanê Tirkîya û yê cîhanî ra vêşêr a.

Selîm Kaplanî va, "Cîhan de tarîfê 'seqet'an termêko zelal nîyo. Tarîfê seqetan ke Paymana Heqanê Seqetan de esto. Na peymane hetê Yewîyîya Miletan ra qebul bîya û Tirkîya zî na peymane îmza kerda, nê tarîfî de sînor çin o. La Tirkîya de seba ke seqetêk heqanê sosyalî ra îstîfade bikero ganî hetê heyetê doktoran ra raporê se ra 40 cor seqetîye bigêro."

Selîm Kaplanî beyanatê çapemenîye de da zanayene ke, goreyê reqemanê Rêxistina Tenduristîye ya Cîhanî (WHO) ra dinya de 500 mîlyon seqetî estê û va, "Goreyê hûmaritişê serra 2002 ra, se ra 12.29ê nufûsê Tirkîya seqet ê. Yanî Tirkîya de heşt mîlyon û nîm seqetî estê. Labelê nufûsê Dîyarbekirî se ra 15 ra cor seqet ê. Seke aseno, hûmara seqetanê Dîyarbekirî rêjeya seqetanê cîhanî ra zî yê Tirkîya ra zî vêşêr a. Helbet sedemê naye xizanî û rewşa şerî ya."

## Xeyrê Şima Sereyê Şima Biwero!

**M. Canşad**

15ê tebaxa 2006î tarîxê rojnamegerîya kurdanê vakurî de rojêka muhîm a. Na roje de kurdanê vakurî bi ziwanê xo dest bi weşanayîşê rojnameyê rojaneyî kerd. Nameyê rojnameyî "Welat" bi. Nameyêko delal. Tam goreyê zerrîya kurdan. Senî ke zext û zorî kurdan û sazge-dezgeyanê kurdan ser o kêmî nêbenê, nê rojnameyî zî çend rey nameyê xo vurna: Azadîya Welat, Rojev, Rojeva Welat…

Rojname roja verêne bi manşetê "Çavên We Ronî" vejîya. Yanî, "Çimê Şima Roşn". Rast a, eke erey çimê ma roşn bibo zî ma rojêka winasî zî dîye. Ma şad û bextewar ê! Sloganê rojnameyî zî xeylê weş bî: "Roj li welat hiltê!" Yanî, "Roj welat de akeweno!"

Roj, hîr-bereket o, weşî û roşnî ya, gan û heyat o. Werre bi ê welatî ke roj tede akeweno. No roj, rojê ziwanê ma yo. Wa weş û war bo ziwanê ma yo delal.

Labelê de bêrîn ma pêro biewnîn ke nê "Roj"î seba ziwanê ma, yanî seba dîyalekta kirmanckî (kirdkî, zazakî) çi ard. Rojo ke çimeyê camêrdîye yo caran destveng beno?!

Çi heyf ke no rojname xeylê wext nêkewt destê ma qismêkê hepsîyan. Îdareyê hepsxaneyan nêardêne, hûmarê ke nas û dostan ma rê şawitêne zî nêdayêne bi ma. Kîsê mêrikan ra nêşono, ma bi pereyê xo herînenê! Ma û îdareyê hepisxaneyan xeylî wext yewbînî berd û ard. Beno ke hewt yan heşt mengan ra pey ma heqê xo girewt. Ê rojan êdî eştênê bi oda û hucreyanê ma zî!

La no "Roj" qet lehçeya ma nêano xo vîr! Hewte yan des rojan ra reyêk bi nameyê lehçeya ma tede yew-di nuşteyî estê ke eleqeyê xo bi lehçeya ma çin o. Ma û lehçeya ma, ma yewbînî nasnêkenê! A ma ra, ma aye ra wina ecêb-ecêb ewnênê. Ma vanê ti çi lehçe ya, a vana şima çi milet ê?

Badê-badê rojnameyî mijdîyane daye: "Ma bi ruhêkê neweyî newe ra dest pêkenê!"

Newe û newe. De wa xeyrî ser o bo…

Rojname nafa bi formêko nêmcet vejîya. Tede rîpelêk bi kirmanckî (zazakî) bî. La nêmeyê rîpelî bi kirdaskî (kurmanckî) cayê îlanan o. Ziwanê xo eynî ziwan. Ya, tede yew-di kesê hêcayî nusenê. Keyeyê înan awan…

Nê yew-di kesan ra teber ne nuşteyê xo nuşte yê, ne xeberê xo xeber ê.

Keso ke qiseya xo nêzano, xêvik-xêvik qisey bikero û her çî bikero têmîyan ra, seba qiseykerdişê nê kesan şarê ma vano, "Gîyê merdimî ano!" Homa zano, wexto ke merdim ê nuşte û xeberan waneno gîyê xo yeno.

Da-des mengan ra dima rojnameyî newe ra xo "newe" kerd. Fek formê nêmcetî ra verada. Qey tena formê nêmcetî ra? Ney! Fek rîpelê kirmanckî (zazakî) ra zî verada. Ancî dest pêkerd, hewte yan des rojan ra reyêk yew yan di nuşteyî bi lehçeya ma. Ancî o qaydeyo verên. Serrêk ra vêşêr bi no qayde vejîya.

Badê, êdî ke se bi, çitur bi, Îmralî ra veng vejîya: "Wa di rîpelê rojnameyî bi zazakî bê!"

Rojnameyî ancî dest pêkerd. La bi "di rîpelan" ney, bi yew rîpelî.

Qet teba nêvuryayo; ziwanê xeberan eynî, nuşteyî eynî sey verî. Ancî tena yew-di merdimê hêcayî…

Yê înan ra teber, cumleyê xo mendê bi cita her û gayî. Ne sereyê xo bellî yo ne peynîya xo. Eke merdim hewnan ver xays qisey bikero, hîna weş qisaya xo, cumleya xo ano werê.

Destpêkê payîzê 2010î de rojnameyî reyna xo "newe" kerd. Sebebê xo çi yo, ez nêzana. La rîpelê kirmanckî (zazakî) ci ra veto.

Rasta ci, hol kerdo! Xeyrê xeyran o yo ke tewr dest pira nênê. Ci ra dûrî vinderê, bes o.

Rojo ke ne roşnîya xo roşnî ya, ne tarîya xo tarî, wa mebo. Xeyrê xo lazim nîyo!

## Dewê jinan ji bo mêran



**Taman Şakir**

Xwedê rehm kir ku xelata Nobel li welatê me nayê dabeş kirin û destê me di hilbijartina kesan û xelatan de tune, ji ber piştrast im wê bibûya kirîz û ti kes bi dest me nediket da ku em xelata Nobel û wan hemû pereyan bidinê. Bi vî rengî jî em ê şermezarê dinya û axiretê bûna. Ji ber lawaziya bîreweriya me em nikarin kesekî hêja ji bo xelatkirinê destnîşan bikin, xelatên me li ser bingehê rûxweşkirina siyasî yan civakî yan berjewendiyên taybet tên dabeşkirin. Xelat jî bûne wek postên hikûmetê!

Heta niha em li Kurdistanê fêrî wê çandê nebûne ku xelatan bidin kesên ji rêzê. Tevî ku dibe hejmareke zêde ya bav û biran li bajar û bajarokên Kurdistanê hebin, ku ji bo xatirê keçên xwe gotinên xelkê dadiqurtînin û wan didin xwendinê û hevkariya wan dikin, yan xwe ji kevneşopiyên paşkeftî xilas dikin û li ser telefonekê yan têkiliyeke evîndariyê keçên xwe nakujin, ev kesên wiha hêjayî rêzgirtinê ne.

Di roja nehiştina tundûtûjiyê de li Kurdistanê kirîza mêrên jindost û çalakvan di warê pirsgirêkên jinan de li Kurdistanê hebû. Gelo kî ye ew mêrê di van şert û mercan de dibe xilaskerê jinan li Kurdistanê? Ew kî ne ku di vî warî de karê baş kirine û jiyana jinekê ji mirinê rizgar kirine û hêjayî xelata parastina jinane.

Rêxistina NY biryar da îsal xelata parastina jinan bide 10 mêran, ên ku rola wan hebû di kêmkirina tundûtûjiya dijî jinan bi mebesta dehifdana mêran ji bo ku di vî warî de kar bikin. Bi hezar halî 10 mêr bidest ketin. Li Kurdistanê xelat dan mêrên wiha ku mixabin rojekê ji rojan kar li ser meseleya jinan nekirine, hinek ji wan jî hêja bûn ku ev xelat wergirtin. Bi baweriya min pêwîst bû hinek ji van xelatan bidana peyamnêrên ku azar kişandin ji ber guhastina êş û kuştina jinan an bidana wan rojname û kovarên ku edîtorên wan mêr in û rûpelên wan ên civakî hene û giringiyê didin vê mijarê. Ger sala dahatû dîsa xelat çûn ji mêran re divê evên han neyên jibîrkirin.

Roja nehiştina tundûtûjiyê dijî jinan li Kurdistanê di serdemê kabîneya 5'an a Hikûmeta Herêma Kurdistanê de û bi insyatîfa Nêçîrvan Barzanî bû helkefteke salane û dîsa di serdemê Barzanî de hinek guherîn di yasa rewşa kesayetî de hatin kirin û rêvebirî û buroyên şopandina tundûtûjiya dijî jinan hatin dirustkirin. Ji wê demê de giringîdayîna bi nehiştina kuştina jinan berbi pêşve çû, ji ber wek tawan hat hesibandin, herwiha beşdariya di 16 rojên dijî tundûtûjiyê de li Kurdistanê bipêşket. Piştrast im ku di dahatûyê de jî bi awayekî baştir kar li ser tê kirin.

Ev jî tek rêye ku zêdeyî nîvê civaka Kurdistanê bi aramî bijîn û di nîvên şevên tarî de jin neyên kuştin. Bila em sala dahatû baştir bin.

## Çareseriyek li gor awayê Qedafî ji bo nakokiyên Tirkiyê

**David Romano**



Ev çend sal in hevalên min ên Kurd bi kêfxweşî serpêhatiyeke Mûamer Qedafî ji min re dibêjin. Bê guman kes naxwaze derbarê daxuyanî û pêngavên dawî yên Serokê Lîbya de neaxive.

Qaşo di dawiya salên 1970'an de, hejmareke Kurdên bajarê Terablus destûr standin navendeke çandî û siyasî ya Kurdî vekin. Balyozê Tirkiyê li Lîbya rasterast nerazîbûna fermî pêşan daye û bi vî sedemî jî bo koşka serokayetiya Lîbya hatiye vexwendin û berî ku balyoz tiştekî derbarê Baskê de bêje, Qedafî gotinên wî birîne û jê re gotiye: "Pêşî dixwazim tiştekî bizanim, gelo ti Kurdekî li Tirkiyê heye?" Balyoz bi vî rengî dikeve rewşeke dijwar de û rasterast bi hevoka fermî ya wê demê ya Enqere bersiva wî daye û gotiye: "Na". Piştre Qeddafî dipirse: "Êdî pirsgirêk çiye?"

Ti agahiyên min nînin ku ev çiqasî raste yan ne raste, lê nîşan dide ku çawa polîtîka fermî û siyaseta înkarkirinê dikare rewşeke komîk dirust bike. Ev pêkenok niha ne ewqasî xweş e, ji ber ku ji sala 1991'ê şûn de Tirkiyê bi awayekî fermî mikur hat ku Kurd li Tirkiyê hene. Bêguman pêdiviya vê yekê bi lêkolîneke hûrbîn a dewletê nebû ku belgeya hebûna nêzîkî 15 milyon kesan bê dîtin.

Mixabin temaşekirina çend helwestên fermî yên Tirkiyê derbarê gelê Kurd, vê yekê pêşan dide ku tevî hemû pêşkeftinên vê dawiyê, hêjî gelek kar maye ku bê kirin, lê heta niha nerîna Tirkiyê bi vî awayî ye, yekem: Li Tirkiyê ti kêmjimar nînin ji bilî Filleh û Cihûyan ku di sala 1923'an de Enqere li wan mikur hat. Dûyem: Ti "pirsgirêkeke Kurdî li Tirkiyê nîne. Sêyem: Tenê "pirsgirêka PKK'ê ya terorîst" heye. Çar: Vejandina aborî rûniştvanên rojhilat û başûr rojhilatê Tirkiyê kêfxweş dike û wan diguherîne bo hevwelatiyên dilsoz û qayîl.

Bi sûdwergirtin ji Qeddafî, çend insyatîfên kêm ên bêmînak pêşkêş dikim: yekem, ji ber ku bextê Tirkiyê hebû û ti kêmjimareke netewî lê nîne, êdî pêwîst nake ku yasayek li Tirkiyê hebe bo qedexekirina "propaganda bo nakokiya netewî", yan "biçûkxistina Tirkbûnê" yan jî "tehdîtkirina yekparçebûna xaka Tirkiyê". Heta ku rojnamevan, akadîmîst û çalakvanên civaka sivîl bikarin hinek caran baxivin bê ku ji aliyê dozgeriya giştî ya dewletê bên vexexwendin û bi sed tometan bên tometbarkirin ku bibe sedemê dehan salên zindankirinê.

Dûyem, ji ber ku ti pirsa Kurd li Tirkiyê tune, hevwelatî dikarin bi çi zimanî be û li ku dibe bila bibe û bi dilê xwe baxivin. Ji bilî medya û perwerdê, ev wêya jî lixwe digre ku doza berevanekî tawanbar ji Kurdî bê wergerandin 'ku niha ji aliyê dadwerên Tirkiyê ve wek "ziman nenaskirî yan zimanê ku tê gotin qaşo Kurdî ye" tê pênasekirin', li şûna ku wek zimanên din bi navê xwe bê bikaranîn, wek tirkî, holendî yan japonî û her zimanekî din 'yên herî dawî bawer dikim ji aliyê dadweran wek "zimanê biyanî" tê binavkirin'. Ligel nivîsandina vê gotara han, siyasetvanên Kurd li Tirkiyê hewl didin "zimanê nenaskirî" bikar bînin bo redkirina tometên dozgerê giştî ku ew hewl didin nakokiyên netewî dirust bikin û Tirkiyê parçe parçe bikin, tevî ku li gor polîtîka fermî ya Tirkiyê ti kêmnetew li vî welatî nînin.

Sêyem: Karê dahatû yê dewleta Tirk beramber dirêjkirina agirbesta PKKê û şermezarkirina şer, divê dawî li êrîşeke din 'a terorîstî ya gerîlla' li ser serbazên dewletê, bîne. Yan jî Tirkiyê PKKê ji lîsta terorê derbixe. Ewqas! Eger guherîna siyasî di xalên yekem û duyem de hat kirin, wê demê PKKê dikeve tengavê de ku bixwaze bersiva vê pirsiyara han bide ka ji bo çi şer dike. Eva ger bi awayekî yekcarî çekên xwe nedeyinin. Ligel ku heye Abdulla Ocalan her carekê tiştekî cuda û berevajî bibêje, ji nîveka salên 1990'ê ev pêdagire li ser dûrxistina rêxistina xwe ji projeyên cudaxwaziyê.

Ger vejandina aborî li rojhilat û başûrê rojhilatê Tirkiyê li pey van hersê pêşniyarên min be, ez ê berê xwe bidim çareserkirina nakokiya Ereb û Îsrailê 'bêguman vê carê jî bi hevkariya Qeddafî'.

Lê eger bi rastî Enqere dixwaze PKKê jinav bibe, pêwîste dawî li van hemû risteyên fermî û ne diyar bîne û rê bide xelkê – Kurd jî di nav de- ku azadiyên rojavayiyan bidest bixin –ku azadiya kêmneteweyan jî lixwe bigre-. Wê demê û ger azadiya rasteqîne bo Kurdan bê misogerkirin, kêm ji Kurdan wê ligel partiyeke Stalînî bimînin. Gelo hinek ji Kurdan vê azadiya nû bikar tînin ji bo daxwazkirina otonomî yan cudabûnê? Dibe, lê sîstem û saziyên siyasî tên dirustkirin bi mebesta lidarxistina gotûbêj û danûsitandinan û lihevkirin an ne lihevkirinê. Ger serkirdeyên Tirkiyê bixwazin, dikarin ji Îspanî, Katalonî, Belçîkî, Swêsrî û Brîtaniyan bipirsin derbarê siyaseta dewletî di welatekî pirnetew de. Yan Enqere dikare siyaseta xwe ya niha berdewam bike, ku çiqasî tê de serkeftî bûye??!!

*Kongreya PDK'ê:*

## Nûbûn, dadwerî, pêkvejiyaneke aştiyane

**Bayram Ayaz**



Kongreya 13. ya PDK'ê roja şemiyê 11'î Kanûna 2010'an li Hewlêrê dicive. Kongre, di siyaseta Kurdistanê de ji bo başûrê welat û herwisa ji bo seranserê Kurdistanê bûyerekî giring e, wê bandoreke xwe ya taybet hebe.

PDK di siyaseta kurdewarî de xwediyê roleke dîrokî ye. Rêber e, rênas û rênîşandarê berjewendiyên doza Kurd û Kurdistanê ye.

Dîroka 64 salan a Partiyê ispata van gotinan e. Noqtayeke din, di bin sîwana vê rêxistinê de berxwedana doza Kurdistanê hatiye domandin bi pêşengiya malbatekî/aşîrekî (Barzaniyan) ku ev cîh û war, hêlîn û navenda parastin û vejiyandina kurdewariyê ye. Ji gotina kurdewariyê mebesta me, parastina hebûna xelkê Kurd û temînkirina jiyaneka azad û bextewar li welatê me Kurdistanê ye.

Dîrok, bi kêmasî 150 sal in şahidê vê berxwedanê ye. Em bi bîra xwe bînin! Şêx Abdusselam Barzanî hê di sala 1863'an de diçe Tiflîsê û bi nûnerê Çarê Rusyayê Garanduk re hevdîtinê çêdike û soza alîkariyê ji bo damezirandina Kurdistanê digre. Di wê hevdîtinê de Simko Axayê Şikakî, Mar Şemûn Benyamîn û Antranîkê Ermen jî amade ne. Lê bayê felekê bi cureyeke din geriya! Şerê cîhanê yê yekemîn destpêkir. Şêx Abdusselam hat şehîdkirin. Mele Mistafa Barzanî, hê di xortaniya xwe de vê jana giran jiya. Piştî Şêx Abdusselam Şêx Ehmed dozê meşand. Mele Mistafa bi hîmet û rêberiya Şêx Ehmed li çiyayên Kurdistanê parastina kurdewariyê kir. Doza Kurdistanê wî gîhand û kemiland.

Piştî Konferansa Tehranê (1943) û Yaltayê (1945) li dinyayê amadekariya pergaleka nû destpêkiribû. Rêberên Kurdan jî xwestin ji vê derfetê îstîfade bikin, dewleta xwe damezirînin. Li cîhanê faşîzm têkçûbû, serdema azadî û demokrasiyê destpê dikir.

Kurdan roja 16'ê Tebax a 1945'an bi pêşengiya Qazî Muhamed Partiya Demokrata Kurdistanê (Îran) damezirandin. Piştî 159 rojan jî li Mahabadê Komara Kurdistanê ragihandin. Pêşmergeyên Barzaniyan li wê derê bûn û Mele Mistafa jî Serfermandarê Dewleta Kurdistanê bû.

Piştî salekî Barzanî û hevalên xwe nefsa wê rojê, yanî roja 16'ê Tebax a 1946'an PDK'ê (Îraq) damezirandin. Wê rojê mizginiyeke din jî digihîje Barzaniyê nemir: li Mahabadê, li bin ala Kurdistanê kurekî wan (Mesûd) çêdibe. Niha PDK û Mesud Barzanî 64 salî ne. Ew berhemên berbanga serdema demokrasiyê ne. PDK îro stûna dewleta de facto (Îdareya Herêma Kurdistanê) ye, Mesûd Barzanî serokê hilbijartî yê vê dewletê ye. Li gor huqûqa navdewletî mixabin Kurdistana me hê "de facto" ye, lê dewleteka rêkûpêk e. Mesûd Barzanî jî li cîhanê ji gelek serokên dewlet û hikûmetan zêdetir naskirî ye û liderekî xwedî liyakateke navdewletî ye.

PDK, rêber û barkêşê sereke vê pêvejoya dîrokî ye. PDK divê li gor vê rola xwe, pergaleke nûjen û rêberiyeke bihêz pêkbîne. Yanî ew dikarin bin barê durişmên Kongreya 13., nûbûn (renewal), dadwerî (justice) û pêkvejiyaneka aştiyane (coexistence) de rabin. Nûjenkirina partî û civakê, gîhaştina pêkvejiyaneka aştiyane ser bingehek dadwerî ji bo hemû hevwelatiyan! Modernizm û medeniyet ev e. PDK, serkêşê modernizm û medeniyeta Kurdistanê ye. Ji bo serkeftina prosesa dewletbûnê divê PDK bikaribe erkê xwe bi cîh bîne. Kongre, destpêkek e.

# Pere tune be, gol jî tune





Diyarbakirspor di pêşbirkên hefteya 14. a Lîga Bank Asya de bi tîma Behra Reş Orduasporê re leyîst û maçê 3-1 winda kir. Du roj beriya vê maçê antrenorê Diyarbakirsporê Engin Korukir îstfaya xwe da, lê Serokê Klûba Diyarbakirsporê sozê heqdestê wî û yê lîstikvanan da û lihevhatin. Lîstikvanên Diyarbakirsporê ku jiber prîmên xwe yê serkeftina li himberê Denizlisporê hê nestandine, bê dil çûn maça Orduyê.

Pirsgirêkên Klûba Diyarbakirsporê naqedin. Di herdu hefteyên dawîn de Diyarbakirsporê cara yekem serkeftinek û wekheviyek bi dest xist û pûanên xwe ji 4'an gihand 8'an, xwest ku li Orduyê jî biserkeve û tevî 3 pûanan vegere Amedê. Lê du roj beriya maçê skandalek nû qewimî. Li gor agahiyên ku di malpera Diyarbakispor.org'ê de hat weşandin Antrenorê vê tîmê Engin Korukir jiber ku ew û lîstikvan heqdestê xwe hê nestandine, îstifa kir. Lîstikvanan jî di nava hev de biryara derneketina maçê standin û piştgirî dan antrenorê xwe. Li ser vê yekê nûnerên klûbê bi Korukir û lîstikvanan re civînek lezgînî lidarxistin û sozê dayîna prîm û pereyên wan ê mayîn dan. Hat ragihandin ku lîstikvanan jî gotine ku ew hê li benda prîmên xwe yên maça li himberê Denizlisporê ne.

Piştî ku pirsgirêk hat çareserkirin koma Diyarbakirsporê li otobusê siwar bû û piştî 12 saetan gihîştin Trabzonê û ji wir jî paşê derbasê Orduyê bûn. Koma Diyarbakirsporê jiber ku li Orduyê cihê antrenmanê tunebû çûn Giresûnê antrenmana xwe kirin û paşê dîsa vegeriyan Orduyê. Hat ragihandin ku rêya dirêj lîstikvanan westandiye û bê moral tevlî maçê bûne.

Di maçê de çar gol hatin avêtin, 3 gol Orduasporê, gola din jî Diyarbakirsporê avêt. Gola Diyarbakirsporê di deqeya 40. de bi penaltiyê Engin Oztonga avêt. Ordusporê piştî vê maçê pûanên xwe zêde kir û kir 23, Diyarbakirspor jî di 8 pûanan da ma.

Hefta pêşî wê Diyarbakrspor bi Gungoren Belediyespor re li Amedê bilîze.

Diyarbakirspor heta niha carek bi ser ketiye, pênc caran wekhev maye û 6 car jî winda kiriye. Tevî 8 pûanan di rêza 17. De, ango rêza herî dawî de cîh digre. Giresunspor jî piştî serkeftina li himberê Denizlsporê ku roja yekşemê hat lîstin û 1:0 bi encam bû, pûanên xwe gihand 10'an kete rêza 16.

### Alîgir ji hêrsan teqiyan

Li aliyê din piştî maçê alîgirên Klûba Diyarbakirsporê li Amedê ber bi avahiya walî ve meşiyan. Têkçûnên Diyarbakrsporê roja yekşemê li Amedê bû sedemê meşa alîgirên vê tîmê. Alîgirên klûbê li ber avahiya wilayetê civîyan û xwestin bi waliyê Amedê Mustafa Toprak re biaxivin da ku pê re derbarê pirsgirêkên klûbê de biaxivin û jê alîkarî bixwazin. Li ser navê alîgiran Ramazan Tugay, ragihand ku ew xwedî li tîma bajarê xwe derdikevin û ji walî dixwazin ku an rêveberiya Diyarbakirsporê belav bike an jî alîkarî bide wan.

# Keçên Amedî dîsa winda kirin



**Tîma Zaningeha Dicleyê Diyarbakirspor a ku di Lîga Jinan a Voleybolê ya Aromayê de beşdariya pêşbirkan dike, di lîstika sêyemîn de jî serkeftin nedît. Keçên Amedê roja yekşemê li Salona Sporê ya Girtî ya Ziya Gokalp bi tîma himber Ankaragucu re leyîst û 0-3 winda kir.**

**Tîma Zaningeha Dicleyê Diyarbakirspor di herdu lîstikên pêşî de jî pûan nestandibû û hêvî dikir li bajarê xwe di lîstika sêyem de biserkevin.**

# Aşiqê Uma Thurman hat girtin



Polîsên Amerîkayê bi ser mala aşiqê lîstikvana Amerîkî, Uma Thurman de girtin û ew binçav kirin.

Ji ber ku wî mêrî berdewam telefona buroya Uma Thurman ya li taxa Manhattan a bajarê New York û telefona wê ya desta jî dikir, zilamê ku xwe weke aşiqê lîstikvana navdar Uma Thurman (40) nîşan dida, ji bo cara duyemîn hat girtin. Herwiha dema ew zilam ji aliyê polîsan ve hat girtin jî, ew li ser kompûtera xwe mijûlî nivîsandina navê wê bû, tevî ku ew berê jî bi tawana lipeyçûna Uma Thurmanê ji aliyê dadgehê hatiye dadgehîkirin.

Wî zilamî dema telefona Uma dikir, yek hevok jê re dubare dikir û digot: "Hevjînê te ne hêjayî te ye, pêwîst e tu ji wî cuda bibî û pêwendî bi min bikî."

## Megan Fox 7'em e



Malpera lêgerînê Yahoo hefteya borî lîsteya navên ku herî zêde tên lêgerîn eşkere kirin. Berevajî salên borî, îsal qezaya tankera petrolê ya li Bendava Meksîkayê di rêza 1. de bû. Wekî din dîsa stêrkên sînemayê û popê rêzên peyvên ku herî zêde hatin lêgerîn, di nav xwe de parve kirin. Rêza 2. Pêşbirka Fûtbolê ya Cîhanê, 3. Miley Cyrus 4. Kim Kardashian, 5. Lady Gaga, 7. Megan Fox

# HANÎ jinekê dide berdan



Stranbêja Kurd Hanî ya ji bajarê Sine ku li Almanya dijî, bû sedema ku jineke bajarê Seqiz ji mêrê xwe cuda bibe.

Cemîle K. a ji Rojhilatê Kurdistanê ku xelka bajarê Seqiz ê, çû dadgehê û daxwaza cudabûna ji mêrê xwe kir. Cemîleyê ji dadgehê re got ku ew êdî naxwaze digel mêrê xwe bimîne, ji ber ku mêrê wê xaniyê wan bi wêneyên Hanî tije kiriye.

Cemîleyê ji dadgehê re ragihand ku mêrê wê bi dehan wêneyên stranbêj Hanî bi dîwarên odeyan daliqandiye, herwiha li mitfaxê jî. Cemîle wiha axifiye: "Mêrê min bi vî karê xwe şerma min li cem xizm û cîranan biriye. Ev çend sal in ez di îşkencê de me û şevê heta sibehê çavên min bi hêstir in, lê ez êdî nikarim bi wî re bijîm û ez hatime xwe jê bidim berdan."

# Yûnanîstan giravan difiroşe



Hikûmeta Yûnanîstanê ji bo ku ji binê deynên giran rabe, biryar da ku çendîn girav û balafirgehan bifiroşe. Giravên Behra Egeyê ku ji bo firotinê navên wan di lîsteyê de derbas dibin, wê ji sînorên Tirkiyê yê avê dûr bîn.

Li gor nûçeya Proto Thema ya hefteyî ya yûnanî Wezareta Darayî, Wezareta Karên Bingehîn û Wezareta Çandê derbarê firotina giravan de lihevhatine û lîsteyek amade kirine. Di nûçeya rojnameya navborî de tê ragihandin ku giravên ku bên firotin divê di navbera Yûnanîstan û Tirkiyê de nebin pirsgirêk û Tirkiye nikaribe bêje na.

Çend giravên ku wê bên firotin ev in: Girava Nafsîka ya Behra Iyonê, Girava Ligia, Girên Ehinades, Girava Yannis û li hinek girên li kêleka Girava Paksosê.

Rojnemaya Proto Thema îdia kir ku Hikûmeta Yûnan hêvî dike ku ji firotina van girav û giran 300 milyon Euro pere bi dest bixe. Hat ragihandin ku şîrketekî navnetewî ya firotinê ku navenda wê li Londonê ye, wê karê firotinê organîze bike û bêhtir Ereb û Rûs wê giravan bistînin. Piştî ku firotina giravan bi dawî bû, wê firotina çendîn balafirgehên biçûk destpê bike.

**Çeperast:** 1- Pêşenîk, porê ser anîyê – Di zimanê biyanî de "qelew". 2- Guman, gazind (berepaş) – Serê sibê, berbang – Pronavê yekem. 3- Çek û sîleha ku ji şewqê çêbûye – Kurtenivîsa "Mîster". 4- Na, no (berepaş) – Dergevan, parêzerê devê derî. 5- Gişt, giş (berepaş) – Dengê mîh û bizinan – Navtêdan, pesindan. 6- Bi "kehanetê" ve girêdayî (berepaş) – Xwarinek. 7- Hov, hirç, dirinde (berepaş) – Qebûlnekirin, nexwestin. 8- Jê çêtir tune, yekemîn, nimro yek – Navekî jinan. 9- Birçî, mirîyê zikê xwe, têrnexwar (berepaş) – Notayek – Zimanê Rûsan. 10- Alav û hacetek muzîkê (berepaş).

**Serejêr:** 1- TV. 2- Tiştên ku ji bo demekê dispêrin kesekî – Dengvedan, vedana deng. 3- Mêşek sor û mezin – Navekî zilaman (berepaş). 4- Bi Erebî kûçik (berepaş) – Nûner, namzet, alîkarê muxtar. 5- Bi erê, belê, rast e (berepaş). 6- Damar, reh, kok – Lîztikek ku bi neh (9) keviran tê lîztin. 7- Navekî zilaman – Ne baş ne xerab – Xwedayekî Sumeran. 8- Navekî zilaman. 9- Zebeş, petîx û xiyar lê dikevin (berepaş) – Ne nêzîk, pir dirêj. 10- Ji dest çûn, hunermendekî Kurd – Jina zavê, keça nû zewicî. 11- Pronavê yekem – Fêkîyek xweş. 12- Agir, namûs – Bejin zirav, bedew, nazik.

## Xaçepirs



### Bersivên hejmara 73

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | q | e | m | i | r | a | n | d | i | n | ■ | ş |
| 2 | e | w | r | ■ | e | v | a | r | ■ | a | z | e |
| 3 | w | a | ■ | a | w | a | z | ■ | a | z | e | ■ |
| 4 | i | r | k | ■ | t | ■ | r | ê | n | ■ | w | î |
| 5 | r | e | e | l | ■ | b | a | n | g | ê | r | ■ |
| 6 | a | ■ | r | î | ş | e | b | r | o | ş | ■ | n |
| 7 | n | e | a | b | a | ş | ■ | e | ■ | î | n | e |
| 8 | d | a | m | a | r | ■ | a | m | a | n | a | p |
| 9 | i | ■ | e | b | a | n | ■ | a | w | a | z | o |
| 10 | n | o | t | e | b | ■ | e | b | ■ | ş | ê | x |